

Hevpêyvîn 8-9 Berken Bereh

## Çarenûs hevgirtina çar parçeyan e

Weke her kurdekî dilşewat ku dixwaze di nav daristana cîhanê de bibe dareke bejin bilind û bi serfirazî bijî. Daxwaziyên wî ji daxwaziyên kurdekî ji kuçe û kolanan pir ne cuda ne. Lê belê behredariya sazkirina peyvên hevokên helbesta wî, ew ji me vediqetîne û dike payandar.

## Salvegera koça Şerafeddin Elçi



Elçi dema di dadgeha bilind da hat darizandin 43 salî bû. Bê tirs û bê teredud li gor fikir û ramana xwe rastiyan anî ziman. Ji ber yekê hat hezkirin û dost û dijminan wî teqdîr kir. Piştî ku di sala 1983'an de ji Zindana Mamak'ê hate berdan rojekê em li Enqarê hatin gel hev. 14


HERDEM RASTÎ

# BasNûçe

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL    Hejmar: 34  29 Kanûn - 04 Çile 2014 - 2015   basnews.com


## Xemxurê tasawûfa kurdî



Sedat Anar 16

# Şengal êdî azad e



Operasyona li dij DAIŞ'a ku bi mehan e Şengalê dagir kiribû, di bin Serfermandariya Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî dom dike. Ev tevgera ku ji bo dawîanîna dagira Şengalê li dij DAIŞ'ê destpêkiriye operasyona herî berfireh a dîroka leşkerî ya kurd e. Di çarçoveya vê operasyonê de li Şengalê stratejîk ji dest DAIŞ'ê hatine derxistin. Pêşmergeyên ku gihîştin Çiyayê Şengalê bi hezaran hemwelatiyên ezidî arasteyî wargehên bi ewle kir.

Di nav vê hêza operasyonê de pirranî Peşmegeyên PDK'ê yên bi ser Wezareta Peşmerge cîh digrin. Pêşmergeyên; YNK, Partiya Komunîst a Kurdistanê û Partiya Sosyalîst a Kurdistanê jî di nav hêza Şengalê de ne. Milîsen ezdî û gerîllayen jin û mêr ên HPG û YPG'ê jî beşdarê operasyonê bûn. Di erişa Peşmerge de baregehên DAIŞ'ê hatin şikandin, pevçûn hîn jî dom dikin. Bi sedan endamên DAIŞ'ê hatin kuştin, gellek birîndar û dîl jî hatine dîl girtin. *rûpel 2-3

# Xeyala pîrozbahiya serkeftinê pêk hat



Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, piştî ku Pêşmerge Herêma Şengalê rizgar kir, li ser Çiyayê Şengal'ê bi rêya çapemeniyê pêyama serkeftinê da raya giştî. Barzanî ku li ser rewşa rizgarkirina Şengalê û rewşa malbatên ku li çiya asê mabûn rawestiya û da zanîn ku xeyala wî ya pîrozbaniya serkeftinê pêk hatiye.

Barzanî wiha got, "Spasiya Pêşmerge dikim ku karîn destaneke dîrokî tomar bikin û di 24 demjimêran de du rêyên sereke yên Rebîe û Zûmarê ya Çiyayê Şengal vekin." Herwiha Barzanî gelê êzdî yê li Şengalê jî pîrozkir û da zanîn ku xeyaleke wî hebûye da ku li ser Çiyayê Şengalê pîrozbahiya serekeftinê bide û ew jî pêk hatiye. Barzanî ku destxweşî li Pêşmerge jî kir wiha got: "Ev serkeftin berhema xwîna şehîdan e, di wê baweriyê de me ku niha giyanê pak ê şehîdan bi vê serkeftinê xweşhal in."

## Kobanê

5

## DAIŞ gihîşt dawiya rê

DAIŞ'ê ji meha Tîrmehê ve dest bi dorpêçkirina Kobanê kiribû û di 15'ê Îlonê pê ve jî, dest bi êrişan kiribû. Bi xweragirî û berxwedana hêzên kurd eşkere bû ku temenê DAIŞ'ê kin e. Berxwedana 3 mehan ya hêzên kurd li Kobanê kiriye ku DAIŞ têk biçe. DAIŞ'ê bi desteserkirina çekên giran ê Musulê êrîş anî ser Kobanê, bi xweragiriya hêzên kurd li Kobanê DAIŞ roj bi roj lawaz bû û paşve vekişiya.

## Miradê Kinê

Portre 15

## Navê talana nû: HES



12-13

Li çar aliyên Kurdistan û Tirkiye'yê bi sedan projeyên HES'an ku xweza, dîrok û çandê têk dibin hatin destpêkirin. Bi çêkirina HES'an şêniyê li wan deran arasteyî koçê tê kirin û dîrok û kevneşopiyên bi hezaran salan dikevin talûkeyê.

## Semsûr



10-11

# Şengal tevlî

Bi hezaran Pêşmergeyan re operasyona li dij DAIŞ'a ku bi mehan e Şengalê dagir kiribû, di bin Serfermandariya Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî dom dike. Tê gotin, ev operasyoana ku ji bo Şengalê ji dest DAIŞ'ê derxe hate destpêkirin operasyona herî berfireh a dîroka leşkerî ya kurd e. Di çarçoveya vê operasyonê de piraniya navçeya Şengalê û cihên herî staratejîk ji dest DAIŞ'ê hatine derxistin. Paqijkirina mayin û kemînên bombeyî yên ku DAIŞ'ê piştî gellek windahiyan da û paşve reviya û li dû xwe binax kiribû dom dike. Pêşmerge, gihîşte Çiyayê Şengalê yê ku bi hezaran hemwelatiyên ezidî tê de asê mabûn û hemwelatiyn arasteyî wargehên bi ewle kir.
Di nav vê Hêza operasyonê ya Pêşmerge ku piraniya wan Pêşmergeyên PDK'ê bûn de Pêşmergeyên YNK'ê, Partiya Komunîst a Kurdistanê û yên Partiya Sosyalîst a Kurdistanê jî hebûn. Di encama vê operasyona berfireh a ku milîsen herêmî yên ezdî û nêziki 150 gerîllayen jin û mêr ên HPG û YPG'ê jî beşdar bûn de baregehên DAIŞ'ê hatin têkşikandin û pevçûn hê jî dom dikin. Tê ragihandin ku ji 500'î zêdetir endamên DAIŞ'ê hatine kuştin, gellek birîndar û endamên wê jî hatine dîl girtin.

Ev operasyona ku çapemeniya hemû dinyayê jî ji nêz ve dişopîne û ji alî rayedarên payebilind ên gellek dewletan ve tê pîrozkirin, bi lez dom dike. Berpirsên Wezareta Pêşmerge ji rojnameya me re ragihandin ku ji bo operasyoneke berfirehtir amadekarî têne kirin. Ji alî din ve Berdevke Hikumeta Herêma Kurdistanaê Sefîn Dîzeyî diyar kir ku Rizgarkirina Şengalê ji bo rizgarkirina Mûsilê gaveke pir girîng e. Derdorên siyasî didin zanîn ku armanca vê operasyona Kurdistanî ya ku hê jî dom dike rizgarkirina Şengalê ye û gava duyem a vê operasyonê jî Mûsil e.

Di çarçoveya vê operasyona ku di berbanga 17'ê Kanûnê de ji bendava Mûsilê heta Çiyayê Şengalê, di frawaniya 50 kilometrî de, bi beşdariya 17 hezar Pêşmergeyî hate destpêkirin de, heta niha qadeke 4 hezar û 200 kîlometr qere, yanî ji Rabîa û Zûmarê heta Çiyayê Şengalê hate rizgarkirin û ev qad ji DAIŞ'ê hate rizgarkirin. Li gel 30 gund û nehiyeyan, nehiyeya Sînûne ya ku cihekî stratejîk e jî kete bin kontrola Pêşmerge. Rêya Rabîa ya di navbera Mûsil û Sûriyeyê de jî bi tevahî kete dest Pêşmerge.
Di vê operasyona ku gellek endamên DAIŞ'ê hatine kuştin û gellek çek û cebilxanêyên wê hatine bi destxistin de, êrîşên frokeyên dewletên hevpeyman jî dom dikin. Berpirsên Pêşmerge didine zanîn ku wê operasyon dirêj dom neke, di nêz de wê hemû herêm ji DAIŞ'ê bê rizgarkirin.

**DAIŞ di nav xwe de pevçû**

Ji alî din ve DAIŞ'a ku şikestineke mezin xwariye, dest bi kuştina endamên xwe yên ku ji şer reviyane kiriye, ji ber ku hemû rê ketine dest Pêşmerge nikare hêzên xwe yên alîkariyê bişîne herêmê û ji ber vê yekê jî tê gotin ku DAIŞ, di nav xwe de vekişîna xwe ya ji tevahiya Kurdistanê nîqaş dike. Li gor agahiyên ku ji axaftinên bêtêlên endamên DAIŞ'ê hatiye guhdarkirin ku DAIŞ bi bergîdana hin şertan dixwaze di korîdoreke ewle de derbasî Sûriyeyê bibe. Her wiha ji ber ku operasyona Mûsilê di rojevê de ye, tê gotin ku eşîrên ereb ji DAIŞ'ê re pêşniyaz kirine ku ji Mûsilê derkebe û DAIŞ'ê jî daye zanîn ku ger şertên wan bêne bi cih anîn ewê ji Mûsile derkebe.
DAIŞ'a ku li Şengal, Kobanê û gellek herêmên Kurdistanê derbên mezin xwar, carcaran ku fersend dibîne dixwaze li hin deveran çalakiyan pêk bîne. Di kêliya berdewama operasyona Şengalê de, DAIŞ'ê hewl daye ku li nêzîkî Bendava Mûsilê, li gundê Sehîlcî û nehiyeya Gwêr êrîşên xwekujî pêk bîne, lê bi ser neketiye.

DAIŞ'ê, li nêzîkî gundê Sahîlcî êrîşî seytera Pêşmerhe kiriye, lê ji ber bersiva Pêşmerge 7 jê emîr, 124 endamên DAIŞ'ê hatine kuştin û DAIŞ paş ve reviya ye. Di vê pevçûnê de berpirsê leşkerî yê DAIŞ'ê ku bi nasnava Şêx Dawud tê nasîn jî hatiye kuştin.

**'Azadkirina Şengalê destpêk e'**

Berdevkê Hikûmeta Herêma Kurdistanê Sefîn Dîzeyî da zanîn ku di operasyona rizgarkirina Mûsilê de wê Pêşmerge tenê weke hêza alikar beşdar bibe û got: "Rizgarkirina Şengalê gaveke girîng e ji bo ji dest DAIŞ'ê rizgarkirina Mûsilê" Dîzeyî destnîşan kir ku rizgarkirina Şengalê ji bo rizgarkirina tevahiya Mûsilê derfetên baş daye bi destxistin û got: "Pêşmerge wê rasterast beşdarî operasyona rizgarkirina Mûsilê nebe lê belê wê bi her awayî alîkariya operasyonê bike. Bêguman rizgarkirina Mûsilê ji bo me girîng e çimku bi hezaran penaberên ku ji cih û warên xwe hatine qewirandin hene û ji bo ev penaber vegerin cih û warên xwe, divê Mûsil ji DAIŞ'ê bê rizgarkirin"

**"Ger serkeftin nebûya ezê nehatima!"**

Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, serdana malbata 3 Pêşmergeyên bira yên ku di operasyona rizgarkirina Zûmarê de jiyana xwe ji dest dan kir. Di daxuyaniya di derbarê vê serdanê ya ku di malpera fermî ya Serokatiya Herêma Kurdistanê de hate weşandin de hate ragihandin ku Serok Barzanî, sersaxiya malbata Pêşmergeyan xwestiye û xemgîniya xwe aniye ziman. Barzanî ji malbatê re gotiye: "Roja pêşî min xwest ez bême cem we û sersaxiya we bixwazim lê belê wê rû bi rû bûna we ji min re zor bihata. Piştî bidestxistina vê serkeftinê hêz kete lingên min ku ez dikaribim bême cem we. Ez hêvî dikim ku ev serkeftin êşa we kêm bike"

**Barzanî: Kurdistan, welatê Xirîstiyanan e jî**

Di daxuyaniya li ser operasyona Şengalê de jî Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, di derbarê şerê li dij DAIŞ'ê de anî ziman ku Nêzîke ku ewrên reş ji ser me biçe. Barzanî her wiha di peyama pîrozkirina cejna sersalê ya Hz. Îsa ya xirîstiyanan de jî ji xirîstiyanên Iraq û Kurdistanê xwest ku cih û warên xwe neterikînin. Barzanî destnîşan kir ku ji ber gefên DAIŞ'ê xirîstiyanên ku mal û warên xwe terikandine jî mexdûr bûne û got: "Siberoja teror, tûndî û hovîtiyê tune ye. Emê hemû axa xirîstiyanan a ku ji alî DAIŞ'ê ve hatiye dagirkirin rizgar bikin"
Di peyama xwe de wiha got: "Kurdistan welatê me tevan e. Divê ji aramî, xwestek, maf û daxwaziyên birayên me yên xirîstiyan re hurmetdarî bê nîşandan. Divê em bi hev re bijîn. Divê em aştî, aramî û pirçandiyê bêtir bigeşînin" Mesûd Barzanî, her wiha ji gel xwest ku sebir bikin.





Endamê Tîma Antî –Terorê yê Pêşmerge Şêx Ehmed Mizûrî ku di operasyonê de birîndar bûbû, jiyana xwe ji dest da.

# niştimanê bû



Şengalê, vê dezgeha çapemeniyê şermezar kirin û dere derxistin. Yawer ragihand ku derdora Şengalê ji alî Pêşmerge ve hatiye dorpêçkirin û pêşketina Pêşmerge dom dike. Yawer ji ber ewlehiya leşkerî diyar nekir ku çiqasê Şengalê di dest DAIŞ'ê de maye û van agahiyan da BasNûçe'yê: "Ez nikarim di derbarê hejmara Pêşmerge ya herêmê agahiyan bidim, ji alî leşkerî ve ev ne rast e. Li Şengale hezên Pêşmerge gav bi gav bi pêş ve diçe. Li herêmê yekîneyên hêzên kurd jî hene. Lê belê hemû operasyon di bin kontrola Pêşmerge de dom dike"

**"Li Şengalê 150 gerîllayên PKK û PYD'ê hene"**

Di derbarê mijarê de Fermandarê Pêşmerge Kamûran Hewramî jî heman gotinan anî ziman û got: "Niha piraniya Şengalê di dest Pêşmerge de ye û me dest bi amadekariyên operasyoneke nû kirî ye. Di çend rojê pêş de wê geşedanên nû pêk bên. Lê ez nikarim eniha detayan pêşkêş bikim. Hêvîdarim ku em di nêz de mizgîniyeke nû bidin gelê xwe. 150 gerîllayên PKK û PYD'ê jî li Şengalê ne. Pêwendiya me û wan pir baş e. Ew jî ji bo Kurdistan biparêzin û bi DAIŞ'ê re şer bikin hatine vê derê. Ez, angaştên ku Pêşmerge ji Şengalê vedikişe belav dikin jî radestî wijdanê wan dikim.

**Xeberên asparagas dîsa destpê kirin**

Di rojên ku operasyona Şengalê bi koordînasyoneke hestiyar dom dikir de hin dezgehên çapemeniyê, cara duyem nûçeyên derew ên bi sernavên 'Pêşmerge direvin' weşandin. Ev nûçeyen asparagas ên ku nimûneyên wê di destpêka dagirtina DAIŞ'ê ya Şengale de hatibûn weşanin destpê kirin. Lê belê dîmen û wêneyên ku ji herême têne van angaştan derew derdixin. Di vê derbarê de Berdevkê Wezareta Pêşmerge Cabar Yawer û rayedarên leşkerî yên din ên



Tiştekî wisa tune ye, berovajî emê mizgîniyên nû ragihînin. Li ser operasyoneke nû plansaziyên me dom dikin. Gellek cenazeyên DAIŞ'iyan di dest me de ne. 3 hevalên me jiyana xwe ji dest dan. Niha li Çiyayê Şengalê qet hemwelatî nemane. Hemû birayên ezidî arasteyî herêmên ewle bûn"

**"Yên nikarin gundekî rizgar bikin wê çawa Şengalê rizgar bikin?"**

Yek ji Fermandarê Pêşmerge yê Şengalê Saîd Şengalî jî wiha axivî: DAIŞ' direve. Hemû palên stratejîk di destê me de ne. Niha şer bi kanas û topên hawanê dom dike. Şervanen ezidî jî li ve derê ne. Kontrola şer di destê Pêşmerge de ye. Moralê me pir baş e. Şervanên hêzên kurd ên din jî li vê derê ne. Piştî ku me dest bi operasyonê kir û em ketin Şengalê ew jî beşdarî me bûn. Angaştên ku Şengal bêyi Pêşmerge hatiye rizgarkirin hene. Ev mijar ne şayanî axaftinê ye. Hemû dinya rastiyê dizane. Bi mehan e ev der di destê DAIŞ'ê de ye çima kesî gundekî jî rizgar nekir. Şer di bin kontrola Pêşmergeyên partiyê de dimeşe. Hêvîdarim em tafilê Şengal û Kobanê rizgar bikin." Înşallah, emê wan rojan bibînin.

**PKK: Bila Şengal, Nînova, Tel Afer, Xaneqîn û Kerkûk bibin kanton!**

Endamê Lijneya Rêveber a PKK'ê Duran Kalkan got: "Divê êdî Kantona Şengalê pêk bê, rê jê re vebûye" Endamê Lijneya Rêveber a KCK'ê Mustafa Karasu jî ji bo Şengal û Kerkûkê 'Xweseriyê' pêşniyaz kir. Duran Kalkan, beşdarî bernameya Politik Alan a Stêrk TV bû û got: "Divê Rêveberiya Herêma Kurdistan û ya Iraqê jî êdî bi demokratî tevbigerin û ji bo gelê kurd ê ezdî li ser axa xwe, li Şengalê jiyaneke azad û demokratîk bijîn hurmetê nîşan bidin" Mustafa Karasu jî di hevpeyvîna xwe ya di ANF'ê de got: "Rizgarbûna Şengalê bi xweseriya demokratîk pêkan dibe. Ji bo vê yeke hemû Şengalî, li ku dibin bila bibin, divê tafilê vegerin Şengalê" Karasû wiha dom kir: "Ger ku civakeke xweparêz a ku li ser hîmê rêveberiya xweser nebe, ewê bibe civakeke bêrêxistin û di siberojê de çend kesên çekdar jî dikarin bêne û Şengalê dagir bikin. Divê Şengal, Nînova, Kerkûk, Xaneqîn bibin herêmên xweser. Ev modêl dikare li her deverê jî bê goncivandin. Heta Telafer û Şengal dikare bibin herêmeke xweser ya hevpar jî."

**PDK'ê bertekek tûnd şanî daxuyaniyên 'Kantona Şengalê' da**

Piştî ku Hevserokê Giştî yê HDP'ê Selaheddîn Demîrtaş û Cemîl Bayik jî dan xuyakirin ku divê Şengal bi herêma Kurdistan ve neyê girêdan û bibe kantoneke xweser, Rêveberiya PDK'ê daxuyaniyekê da û bertekeke tûnd şanî van daxuyaniyan da. Piştî daxuyaniyan PDK'ê Demîrtaş paşve gav avêt û got: "Ez şaş hatime têgihîştin. Ez li dij nînim ku Şengal bi Kurdistan ve bê girêdan" Koma Parlamena Kurdistan a PDK'ê di derbarê mijarê de daxuyaniyeke niviskî belav kir. Di daxuyaniyê de pêşniyaza Demirtaş a ji bo Şengale xwestina Kantonê hate rexnekirin û hate gotin ku "Ji bilî gelê Şengalê û kesên ku ji bo Şengalê canê xwe dane, tu kes ne mafdar e ku li ser Şengalê bipeyive" Di daxuyaniyê de destnîşankirina 'yekgirtîbûna axa Iraqê' bi pirsa "Ev ji kî re xizmet dike?" hate rexnekirin. Daxuyaniya PDK'ê wiha ye: "Gelên cîhana azad, yên li dij terorê têdikoşin û hemû gelê Kurdistan bi serkeftina Pêşmerge kêfxweş dibin û weke hêviyekê lê dinihêrin, lê mixabin ji aliyê din ve hin gotinên ku ji pirsgirêkên kurdan re nabin çarenûs û tenê kêfa dijminên kurdan tînin têne bi levkirin" Di daxuyaniya ku tê de hatiye destnîşankirin ku gelê Kurdistan ji mêj ve li dij dabeşkirina axa xwe derketiye de wiha tê gotin: "Birêz Demîrtaş, di şûna ku serkeftina rizgarkirina ji Şengalê heta Celewla ku bi xwîna Pêşmerge pêk hatiye pîroz bike, ji bo Şengalê peşniyaza kantonê dike. Şengal, perçeyek ji tekoşîna li dij perçebûna Kurdistanê ye"

## Partiyên Siyasi yên Bakur

# Barzanî serê me ji erdê rakir

**Rûbar Kelaşîn**

Rizgarkirina Şengalê ya ji DAIŞ'ê careke din hem hêzên leşkerî yên kurd nêzî hev kirin û bi hevkarî operasyon pêk anîn û hem jî partî û rêxistinên siyasî bi boneya mizgîniya azadkirina Şengalê peyamên têkildarî yekîtî û netewebûnê didin. Ji ber ku operasyona ku bi boneya rizgarkirina Şengalê hat lidarxistin di warê leşkerî de operasyona herî mezin a kurdan bû, li cîhanê jî deng veda. Piştî rizgariya herêmê cîgirê serokê DYA'yê û serokwezîrê Iraqê jî di nav de gelek kesan spasî û pîrozbahiyên xwê pêşkêşî Serokê Herêma Kurdistanê kir û pê re partiyên Bakurê Kurdistanê jî têkildarî mijarê bi daxuyaniyan piştgiriya xwe dan



nişandan.

Serok û parlahmenterên partiyên siyasî yên Bakurê Kurdistanê helwesta Serokê Herêma Kurdistanê Masûd Barzanî ya ji bo rizgarkirina Şengalê hêja dibînin û tînin ziman ku bi rizgarbûna Şengalê re li çar perçeyên Kurdistanê kurd kêfxweş bûne.

Wek tê zanîn DAIŞ'ê di 3'yê tebaxê de bi ser Çiyayê Şengalê de girtibû û gellek şeniyên Şengalê dîlgirtibû. Piştî dagirkirina Şengalê ji hêla DAIŞ'ê ve Hêzên Pêşmerge amadekariyên xwe dikirin da ku DAIŞ'ê ji nava bajarê Şengalê derxin û dîlên di destê DAIŞ'ê jî de azad bikin. Bi vê mebestê di roja cejna êzdiyan de di 18 kanûnê de bi serperişteya Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî operasyona rizgarkirina Şengalê hatibû destpêkirin.

Hat zanîn ku bi destpêkirina operasyonê ve Hêzên Pêşmerge li hember DAIŞ'ê pêşdeçûnê û DAIŞ ji nav bajarê Şengalê derxistine. Di dawiya operasyona rizgarkirina Şengalê de, di 2ê kanûnê de Serokê Herêma Kurdistanê Masûd Barzanî li ser Çiyayê Şengalê di konfiranseke rojanemevanî de ragihand ku, ew şanaz ih ku Hêzên Pêşemrgeyên Kuridstanê karîn Şingalê rizgar bikin û herwiha serkeftina pêşmergeyan jî dîrokî dabû zanîn û bilind nirxandibû.

**Cenabê Serok Barzanî serê me ji erdê rakir.**

Helwesta Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî ya bo rizgarbûna Şengalê ji hêla partiyên siyasî yên Bakurê Kurdistanê bilind hat nirxandin. Di vê çerçoveyê de Parlementerê Colemergê yê Partiya Gelan a Demokratîk (HDP) Esad Canan da zanîn ku Serokê Herêma Kurdistanê Masûd Barzanî, mizgîniyek daye gelê Kurdistan û bi wê mizginiyê kurd şad û bextewar bûne.

Canan axaftina xwe wisa domand. " Cenabê Serok Barzanî serê me ji erdê rakir. Bi xêra wî êdî serê me li cihanê bilind e. Karekî gellekî baş kir. Cihê wî di dilê hemû kurdan deye." Canan hevkariya Hêzên Pêşmerge, YPG û HPG'ê jî bi bîrxistin û spasiya hemû hêzên kurd kir.

**Peywendiyên kurdan xurt dibin**

Serokê Partiya Azadiya Kurdistanê (PAK) Mustafa Özçelik jî eşkere kir ku bi rizgarbûna Şengalê re planên xêrnexwazên Kurdistanê tê kçûne û hêzên kurd rê li ber dagirkeran girtiye. Özçelîk her wiha da zanîn ku ew gellekî şanaz û bextewarin ku mizgînêyên bi xêrê ji Hêrema Kurdistanê dibihîzîn û wan li ser rizgarbûna Şengalê jî daxuyanî belav kiriye. Özçelik gotinên xwe wisa berdewam kir: "DAIŞ'ê dixwest desftkeftiyên kurdan ji nav bibe,





Herêma Kurdistanê ji nav bibe, lê belê Hêzên Pêşmerge bergiriya vê yekê kirin. Di operasyona rizgariya Şengalê de cenabê Mesûd Barzanî roleke dîrokî lîst. Ev yek gellekî muhîm e. Peywendî û tekîliyên me xurt dibin û hêzên kurd alîkariya hevdû dikin ev yek jî gellekî muhîm e."

**'Pêşmerge parazvanên xak û xelkê Kurdistanê ne'**

Serokê Giştî yê HAK-PAR'ê Fehmi Demir jî ragihand ku rizgarkirina Şengalê pêngavek e dîrokî ye û rizgarbûna Şengalê careke din eşkere kiriye ku pêşmerge parazvanên xak û xelkê Kurdistanê ne. Demir, helwesta Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî ya bo rizgarkirina Şengalê jî bilind nirxand û wisa domand: "Em bi mizginiya Şengalê re kêfxeş bûn. Lê xetereya li ser xak û xelkê Kurdistanê berdewam dike lê îro em lê dinêerin Herême Kurdistanê dê parazvaniyê wê dike."



**Êzdî xwedî kultur û çanda qedîm a Kurdistanê ne**

Kordînatorê Tevgara Azadiyê Adem Özcaner jî anî ziman ku Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî li ser Çiyayê Şengalê axaftineke dîrokî kiriye û kurdên li çar perçeyên Kurdistanê jî bi wê axaftina wî şad û bextewar bûne. Özcaner axaftina xwe wisa domand: " DAIŞ li diji mirovahiyê ye, cenabê Mesûd Barzanî jî anî ziman DAIŞ'ê, êş û derdên mezin da jin û zarokên me kurdan, kerasatên mezin bi serê me de anîn. Lê belê peşmerge li hember wan disekinin û xaka me rizgar dikin. Divê nûnerên partiyên kurd nûnerên hêzên kurd li hev rûnên û xwe ji bo parastina Kurdistanê amade bikin. Hewcedarî bi hêzêke neteweyî heye. Divê careke din tiştên wisa neyên serê me"

Özcaner bal kişand ser roja rizgarbûna Şengalê jî û wisa berdewam kir: "Roja rizgarbûna Şengalê roja cejna Êzdiyan e. Divê civaka Êzdî bêne parastin ew xwedî çand û kultura qedîm a Kurdistanê ne. Rizgariya ezdiyan rizgariya hemû Kurdistanê ye. Li her çar perçeyên Kurdistanê kurd şad û bextewar bûn niha jî li hêviya rizgariya Kobanê ne."

**Bi serokatiya Mesûd Barzanî DAIŞ ji**




**nav xaka Kurdistanê tê derxistin**

Serokê Giştî yê Partiya Demokrata Kurdistana Tirkiyê (T-KDP) M. Emin Kardaş jî eşkere kir ku bi operasyonê azadkirina Şengalê re nirxên Kurdistanê û axa Kurdistanê hatine rizgarkirin û parastin. Kardaş, kêfxweşî û şadiyên kurdên li çar perçeyên Kurdistanê jî bilind nirxand û da zanîn ku şad û bextewarbûna kurdan bi destê Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî ve pêk tên. Kardaş axaftina xwe wisa domand: "DAIŞ ji Şengalê hat derxistin. Pêşiya kerasetan tê girtin. Bi serokatiya Mesûd Barzanî DAIŞ ji nav xaka Kurdistanê tê derxistin. Em hêvî dikin ku li ser axa me nemînin. Herêma Başûrê Kurdistanê ber bi dewletbûnê ve diçe, em jî ji vê yekê gellekî kêfxweş in. Em dixwazin ala Kurdistanê her tim berz be."

## Kobanê

# DAIŞ gihîşt dawiya rê

DAIŞ'ê ji meha tîrmehê ve dest bi dorpêçkirina Kobanê kiribû û di 15ê îlonê pê ve jî, dest bi êrişan kiribû. Bi xweragirî û berxwedana hêzên kurd eşkere bû ku temenê DAIŞ'ê kin e. Berxwedana 3 mehanya hêzên kurd li Kobanê kiriye ku DAIŞ têk biçe. DAIŞ'ê bi desteserkirina çekên giran ê Musulê êrîş anî ser Kobanê, bi xweragiriya hêzên kurd li Kobanê DAIŞ' roj bi roj lawaz bû û paşde vekişiya. Her wiha hat zanîn ku çekdarên rêxistinê ref bi ref ji nav wê vediqetin û di nav rêxistinê dest bi kuştina endamê xwe kiriye. Rêxistina terorê DAIŞ li Kobanêyê li hember hêzên kurd roj bi roj şikestinê dixwe û hêzên kurd jî roj bi roj ber bi serketinê diherin. Bi taybeti di hefteyeke dawî de li çeperên şer, hêzên kurd gellekî bi pêşde ketin û Girê Miştenûrê yê stratejik û avahiya şaredariyê ji destê wan derxistin. Her wiha hat zanîn ku gellek muhîmatên rêxistinê jî hatine desteserkirin.

**Girê Miştenûrê û avahıya şaredariyê di deste YPG'ê deye**

Girê Miştenûrê yê ku di meha cotmehê de ji hêla DAIŞ'ê ve hatibû dorpêçkirin û Arîn Mîrxana gerillaya YPJ'ê li hember DAIŞ'ê çalakiya xwekujiyê li dar xistibû. Berxwedan û pêşdeçûna hêzên kurd êrîşên DAIŞ'ê feşkilandin û Girê Miştenûrê ji destê wan derxistin. Girê Miştenûrê yê li başûrê rojhilatê Kobanêye, piştî topbarankirinên Hêzên Pêşmergeyan û êrîşên YPG_YPJ'ê ji destê DAIŞ'ê hat derxistin. Avahiya şaredariyê ya ku ji hêla DAIŞ'ê ve weke leşkergeh dihat bikaranin jî ji deste rêxistinê hatin derxistin.

Fermandeyê Hêzên Pêşmergeyan Şerwan Spindareyi eşkere kir ku 300 metre li başûrê gir û 400 metre jî li rojhilatê bajêr pêşde çûne. Spindareyî, da zanîn kû operasyon bi alîkariya balafirên hêzên navdewletî pêkhatiye. Ferdmendeyê Pêşmergeyan her wiha ragihand ku bi êrîşên top û roketên katyuşa hatine bikaranîne û navenda doçkayên DAIŞ'ê yên Girê Miştenûrê ji nav hatine birin û gellek çekdarên rêxistinê jî hatine kuştin.

**Çekdarên DAIŞ'ê direvin**

Hat ragihandin ku piştî pêngavên dawî çekdarên DAIŞ'ê ji Kobanê'direvin. Her wiha tê payîn ku gellek çekdarên rêxistinê xwe teslîmî yekîneyên tirk ên li ser sînor kirine û nayê zanîn ku ew bo ku derê tênê hatine veguhestin. Rojnameger Şervan Munbic, li ser pêngav û geşedanên dawî ji Rojnameya BasNûçeyê re peyivî. Munbic wiha got: " Gellek kesên em li ser sînor bi wan re peyivîn ragihandin ku roja yekşemê 15 çekdarên DAIŞ'ê ji ser sînorê El Şarê xwe teslîmî Tirkiyê kirine."

**Koziken DAIŞ'ê hatin desteserkirin**

İsmet Şêx Hesenê Wezîrê Berevanê Kobanê jî ragihand ku operasyonên rizgarkirina DAIŞ'ê berdewam dikin û hêzên kurd kozıkên rêxistinê jî rûxandine. Şêx Hesen, her wiha da zanîn ku însiyatif di deste YPG'ê deye. Şêx Hesen wisa berdewam kir: "Li nêzîkî Navenda Çand û Kulturê YPG'ê hucreyên DAIŞ'ê bi dest xistin.

**Planên DAIŞ'ê yên Kobanê bi ser neketin**

Hevserokê Kantona Kobanê Enwer Mûslîm jî ragihand ku DAIŞ, ji havînê derbasbûyî ve, bi xewna dagirkirina Kobanê ve dijî û êrîşî Kobanê dike. Mislim her wiha da zanîn ku planên DAIŞ'ê yên dagirkirina Kobanê bi ser neketine lê bele metirsiya li ser gel berdewam dike. Mûslîm ragihand ku berxwedana hêzên kurd jî li Koabnê berdewam dike. Mûslîm axatina xwe wiha domand: " Berxwedan berdewam dike, div an rojên dawî de li rojhilat û başûrê rojhilat gellek pêşketin pêk hat. Di gel pêşketinên hêzên kurd DAIŞ jî bombe baranê berdewam dike lê belê operasyonên hêzên kurd û koalisyona navdewletî jî berdewam dikin. DAIŞ êdî nikare Kobanê dagir bike. Lê belê êrîşên topan ê li ser gel berdewam dike. Li hember DAIŞ'ê di demeke nêzîk de em ê serketinên mezin bidest xînin û em ê DAIŞ'ê ji nava bajêr derxin. Ji bo ku em jinabirina DAIŞ'ê pedîviya me bi alîkariyan heye."

**Korîdora mirovî divê bê vekirin**

Mûslîm eşkere kir ku roj bi roj sivîlên nava Kobanê zede dibin, Mislim her wiha da zanîn ku sê terefên bajêr hatine dorpêçkirin. Mislim her wiha xwest ku ji bo sivîlen nava bajêr pedîvî bi koridora mirovî jî heye. Mûslîm wisa berdewam kir: " Ji ber mercên demsalê û ji bo ewlehiya sivîlan, em dixwazin koridora mirovî bê vekirin. Bi hezaran zarok, pîr, jin niha di mercên nebaş de dijîn. Divê ew gotinên alîkariyê li ser levan nemine û pêk were"

**Yekîtiya kurdan morala me bilind kir**

Mûslîm derbirî ku operasyona rizgarkirina Şengalê ya hêzên kurd tesir li berxwedana Kobanê kiriye. Mûslîm wiha berdewam kir: "Serketinên li Kobanê jî moralên hêzên kurd ê Şengalê gellekî bilind dike. Berxwedan û tevgera hêzên kurd a bi hev re moralên me gellekî bilind dikin. Ev yek ne tenê li Şengalê li ku derê be wisa ye."



**DAIŞ ji Cizîrê jî hat dûrxistin**

DAIŞ'ê hefteya borî êrîşî Kantona Cizîrê ya Rojava jî kiribû.Hevrserokê Meclîsa Kantonê Hekim Xalo, di derbarê êrîşên DAIŞ'ê de axivî. Xalo da zanîn ku êrîşên DAIŞ'ê yên 5 rojan berdewam kirin hatine feşkilandin. Xalo axaftina xwe wisa domand: " Gellek çekdarên DAIŞ'ê hatin kuştin û nikarîbûn pêşde werin. Niha li her terefê serketin ê YPG'ê ne. Moralên kurdan gellekî bilind in em ê hemû di demeke nêz de serketinan pîroz bikin."

**Di Lijneya Lihevkirina Rojava de alozî**

Encûmena Niştimaniya Kurd (ENKS), 3ê partiyen nav xwe, bi hinceta di hilbijartinên rêveberiya Rojava de piştgiriya endamên Tevgera Demokratîk a Gel (TEV- DEM) kirine îhraç kir. Rêvebirê TEV- DEM'ê Aldar Xelîl di derbarê ihraçbûna 3ê partiyan de axivî. Xelîl eşkere kir ku eger biryar bênê stendin dive ji hêla lijenayan bê stendin. Xelil amaje pê kir ku helwesta ENKS'ê ne meşrû ye. Xelîl wisa berdewam kir: " Helwesta ENKS'ê nayê qebûlkirin, divê kêşeyan bi hevre çareser bikin . Eger hinek partî ji ENKS'ê derkevin, dê giraniya wê nemine û dê beşa wê ya di konseyê jî de kêm bibe."

Piştî Peymana Duhokê li Qamişlo ji bo 6 kesan hilbijartin hat kirin. Sê partiyên bi hinceta di hilbijartinê de piştgiriya TEV- DEM'ê kirine sê partiyên ENKS'ê hatin îhraçkirin. Endamê Revebiriya TEV- DEM'ê Aldar Xelil, li hember îhraçbûna partiyan nerazîbûn nîşan da. Xelîl nerazîbûnên xwe wisa eşkere kirin: " Kêşe derxistin, nakokî, biryar stendin û bi hinceta deng bi karanîne derkirina partiyan, bahane ne li hember xebatên siyasî. Hemû mirov azad in, ji ber deng dayîna hinekan çu wext tu kes naye darizandin. Ev helwest nişandine li hember demokrasi yê. Di esasî de naxwazin xebatên siyasî berdewam bikin. Ji ber vê yekê her tim kêşeyan derdixin. Ev helwest ne rast e. ENKS bi tena sere xwe nikare partiyan îhraç bike. Dibe ku ji ENKS'ê derxin lê nıkarin ji konseye derxin. Lewre komele, komeleyeke neteweyî ye û hewcedarî bi biryara me jî heye. Bo çaresekirina vê kêşeyê me bangawaziya civînê kir."



# GAXANDÎ

**Nadire Güntaş Aldatmaz**



Gaxandî serê serra neweye ra çend rojî avêr ê. Kes seba roja Gaxandan tarîxode net nêvano. Ekserîyet vanê serrnewe ra di-hîrê rojî avêr dest pêkenê.

Gaxandan de roje hîrê rojî yeno girewtene. Roja verêne, şodir lêle ra lojine sanenê ro, duyê lojine kenê pak. Cayo ke tey wele verdanê de heta o ca nat-dotê raye de a wele risnenê heta ke wele berde verdê de.

Ancî şodir lêle ra ke zerdî sana ci, danî pojenê benê hênî ser. Girmikê danî erzenê hênî ser, hênî ra awe gênê anê. Awa tezîye piziqnenê zerê keyeyî ra, cilan ra, bineyê gomeyî ra. Danî piziqnenê bineyê gomeyî ra. Tayîne kî kenê la ra, şîrê kemerî yan kî pîyaz kî kenê orteyê layî ra. Layî fînê hêzîkê ra, kenê çeranî ver ra. Danîyê ke mendî kî sole kenê, danê malî.

Rojey ke qedîyayî nîyaz kenê vila. Vilakerdişê nîyazî şert nîyo ke peynîya rojeyî de bo. Roja verêne de, a diyîne de, roja pêyene de kî nîyaz beno vila.

Roja ke Gaxandî vejîyay kî nîyaz pewjenê benê jare, dewrês jare de veng dano Haqî (cem gêno). Wexto ke nê rîtuelî ardî ca, tim dua kenê. Duayê Gaxandî bi "Ya sarsal û padîsawo newe ..." dest pêkeno. (Pîlvank)

Hetê Pulurî (Ovacixe) de dewa Merasî de kî şan ra zirfetî pewcenê, şodir lêle ra benê serê hênî de nanê ro ke kam ke ameye hênî, zirfetî biwero. Hênî ra awe gênê (Na awe ra awa zemzemî vanê.) anê, piziqnenê zereyê keyeyî ra, bineyê gomeyî ra. Pê a awe kincan şunê, sereyê xo şunê. Şan de Kalo Gaxan virajenê (Kincan danê pira, herdîse nanê pa. Ci rê zimbêlan virajenê.) Kalo Gaxan cinîke yan kî camêrd beno. Hexibeyê erzeno re xo doşî, ver de koçek, pey de Kalo Gaxan keye be keye fetelînê. Koçek pê çuye dano be keberî ro, kal çî-mî wazeno (rûn-ardî). Çîyê xo dano arê beno. Şande gencî yew keye de yenê têleye, pê ê ardan û rûnî nanê tawa pewjenê, wenê. Tembur cinenê, lawikan vanê, kay kenê.

Keyeyan de zî bicike pewcenê, hîrê darikan erjenê mîyanî mîrê bicike. Yew darik seba riskî, yew seba cite, yew kî seba weşîye beno. Picike ke pewcîye kenê lete, wenê. Kamcî darik ke şî kamî, o kes/a kese şa beno/a, çike ê, a serre, ya riskin benê, ya weşîya xo bena yan kî hêgayê xo bereketin benê.

# ATLANTÎS



**Murad Canşad**

Atlantîs, girawêka efsaneyî ya. Ser o zaf sanikî ameyê vatene. Heme sanikan de behs beno ke na girawe cayo awan bîya, tede medenîyet xeylê xeylê aver şîyo, şaro ke tede ciwîyeno murefeh bîyo, dorûver binê hukmê nê şar û na girawe de bîyo... Feqet zelzele bîyo, na girawe bi heme şar û medenîyet û awanîya xo binê awe de menda.

Atlantîsî ser o tena ewro sanikî estê. Cayo winasî estbîyo, çin bîyo, kes nêzaneno. Ne cayê xo dozkerde yo ne zî dewr û dewranê xo... Ge-ge ser o misqalikê neweyî vajîyenê. Ge vanê na girawe nêzdîyê Yunanîstanî de bîya, ge vanê mabênê Ewropa û Amerîka de okyanusê Atlantîkî de bîya...

Keso ke verê Atlantîsî ser o vindeto Platon (Eflatun) o. Vatişê Platonî gore, Solon derheqê na girawe de wayîrê zanayîşî bîyo, ey zî no zanayîş keşîşanê misrijan ra giewto. Platon vano na girawe zaf girs (gird) bîya. Ordîyanê aye rojawanê Ewropa û Lîbya girewto binê hukmê xo. Feqet Atîna xovero dayo, ordîyê aye nêeşkayê bikewê Atîna.

Atlantîs çiyo xeyalî yo yan rastkên o?

Tayê aliman û roşinvîran (roşnavîran) vato xeyalî yo, cayê winasî çin o. Tayênan zî sey Montaigne, Buffon û Voltaire qenaet ardo ke rast a, girawa winasîye esta.

Êdî ke rast a, êdî ke xeyalî ya...

Çîyo ke mi rê enteresan yeno, seke ewropijî beno hîrê sey serrî ke xo merkezê dinya vînenê, tarîxê xeylê çîyî Ewropa ra, bitaybetî Yunanîstan ra danê dest pêkerdene; texmînê xo o yo ke cayê Atlantîsî zî dorûverê Ewropa yo. Ewropa ra teber, Ewropa ra dûrî yewna ca nêbeno!

Mevaje medenîyet... Xeylê wext wina ameyêne zanayene ke medenîyet Ewropa de awan bîyo, uca ra vila bîyo. Feqet badê ke arkeolojî û antropolojî aver şono; newe-newe cigêrayîşî yenê kerdene, eşkera beno ke medenîyet badê-badê Ewropa de awan bîyo. Cayê xo yo tewr verên Mazopotamya ya. Ewro pagê dorûverê Erxenî û Ruha yenê kendene (kinitene) û cira xeylê çî vejîyeno bi rîyê erdî ke des hezar serran ra ver merdiman tîya de komelî, dewî, bajarî awan kerdê. Verê, tîya dest bi cite bîyo, tîya de heywanê koyî (kovî) kedî bîyê.

Hetanî ewro binê awe de bajarêk yan zî dewêk nêameya vînayene ke ma bivajê cayê Atlantîsî yo. Feqet binê gola Hezarî de bajarêk esto, çi wext ra yo ke alimî nê bajarî ra xeberdar ê. Labelê çi heyf ke nê bajarî ser o cigêrayîş nêameyo kerdene.

Dewlete vana, gereka ez nuşteyanê hepsîyan kontrol bikerî hema bişawî. Baş o. Madem kontrol kena, wa xo rê tercuman bivîno. Hepsîyo reben kotî ra tercuman peyda bikero? Peyda bikero yan ma vajin ke hepsî bi xo tercume bikero, qebul nêkenê; çunke bawerîya xo pê nêanê. O wext wezîfeyê dewlete yo ke tercuman peyda bikero. Mesela na ya, bi tirkan heq û huqûq dayîş qebulkerdiş asan nîyo. Gereka ma her hetan ra mucadele bikin.

Çi destê ma ra yeno, ma çiqas heq ra yenê, ma kenê. Mesela, mi senî ke mektuba Nîhatî girewte, mi bi tirkî yew nuşte nuşt, fotokopîyê qerarê Komîsyonê Wendişê Mektuban û mektuba Nîhatî ke mi rê nuşta reyde da weşanayîş ke wa rayapêroyî pêbihesîyo. Zafê çapemenîya kurdan nuşteyê mi kopî kerd weşana la çapemenîya partîya hepsîyan xo kerr kerd! Ancî mi nuşteyê xo Fabeook de hesabê heme parlementeranê partîya hepsîyan rê şawit la tu kesî ra pitî nêvejîya!

Ez do dozgerîye de zî dewa akerî ke îdareyê hepisxaneyî heqê minê têkilîya bi hepsîyan asteng kenê, herinda ke vajê ma "nê ziwanî ra fehm nêkenê" vanê "*no ziwano ke fehm nêbeno (anlaşılmayan bu dil)*" û bi no qayde ziwan û milîyetê ma rê heqaret kenê.

Xulasa tirkî kaxidî ser o yew heqo qijkek danê la pratîk de seba ke kes ci ra îstîfade nêkero çi destê înan ra yeno texsîr nêkenê. Heto bîn ra, ma zî zêde heqê xo ra nêvejyenê! Zafê reyan hepsîyê ma seba tayê çîyan xo veyşan teyşan verdanê, xo perîşan û helak kenê la meselaya ziwan û milîyetê xo de zaf zî cad nêkenê.

Dewleta tirkan de hîle û xurdeyî nêqedyenê! Mesela, tam wexto ke serwezîrê tirkan va ma meselaya ziwanê dayke de okyanusan ra vîyartî, eynî o wext, hem nuşteyê kurdkî yê hepsîyan nêdayne teber hem zî weriştî weşanê ke hetê şîrketanê vilakerdişî ra vila nêbenê, hepsîyan rê qedexe kerdî. Mesela, rojnameyê *Newepelî* ke ma seba M. Remzî Kayayî şawitbi hepisxaneyê Adena, ancî seba Sezaî Memîşî ke ma şawitbi hepisxaneyê Bandirma, apey ameyî.

La badê ke hepsîyanê Tekirdagî zere ra mucadele kerd û helbet teber ra zî bi tesîrê nuşteyan û dîplomasîyê ma, roja 10.12.2014 de dewleta tirkan na mesela de apey game eşte, qedexe wedart.

***Çime:*** *Ansîklopedîyê Ana Britannica*

# Demokrasî, dewlet û ewlekarî

**Zerdeşt Ronahî**

Çavkaniya aramî û bexteweriya civakan ewlehî ye. Eger di civakekê de ewlehî tunebe û asayiş berqerar nebe, dê alozî û tevlihevî zal be. Emniyeta can, mal, namûs û kerameta însaniyetê namîne. Mekanîzmaya ku em jê re dibêjin 'dad û dewlet' jî ji bo vê yekê heye. Dewlet, yanî qewet û hêza edaletê. Bingeha hiqûq û aramiyê dewleteke demokratik e. Lewra eger qewet û hêz tunebe, hiqûq bi cih nabe û aramî nayê holê. Ji bo hiqûq serdest be û herkes jiyana xwe ya asayî bidomîne, lazim e mekanîzmaya dewletê hebe.

**Bingeha dewletbûnê ewlekarî ye**

Felsefeya dewletê û çawaniya wê, ji serdemên antîk bigire hetanî çaxê navîn û esra modern jî her û her babeta nîqaşê ye. Li Çînê piştî sedsala 5'an mutefekkirên wek Konfiçyus, Mensiyûs û Mozî qewêtiya yekbûna di dewletê de û îstiqrarê kirine.

Van fîlozofan fikra dewletbûnê parastiye. Bi taybetî Konfiçyus gelekî ehemmiyetê dide hiyerarşiyê û li dijî wê yekê ye ku kevneşopî xera bibin. Herwiha parastina wî fikrî dike ku kesên herî jîr di dewletê de bibine rêvebir. Berhema Platon ya bi navê Dewlet jî, li Yûnan a Kevn behsa dewletê upotîp ya bajarî dike.

Di vê berhemê de mamosteyê Platon, Sokrates bi fîlozofên dema xwe re li ser çawaniya dam û dezgeh û rêvebirên dewletê jîmnastîka fikrî dike. Her carê jî yê li hemberî xwe têk dibe. Lewra ew li pey dewleteke îdeal a utopîk e. Belkî jî edaleta îlahî! Di vê nuqtê de em dikarin Îmamê Elî jî bişibihînin Sokrates ku heqîqetperest e. Eger em îstilahên Îslamî bêjin ewî edaleta mehza fedayî edaleta îzafiye nekiriye. Yanî heq û hiqûqê ferdekî ji bo selameta girseyê feda nekiriye. Edaleta tam û mukemmel jî ev e. Sokrates jî di guftûgoyên xwe yên dûr û dirêj de behsa dewleteke îdeal kiriye...

**Ewlekarî ji bo jiyanê pêwist e**

Mekanîzma rêvebirina coxrafyayekê, welatekî, deverekê û hetta gundekî ji destpêka mirovahiyê ve heye. Împeratorî, qraliyet, siltanî, padîşahî, xelîfetî, mîrtî, begtî, axatî û bi şeklê herî dawîn jî dewletî...

Piştî tecrubekirina gelek rêbaz û awayan, herî dawîn forma nûjen a ku di encamê şoreşa fransî de derkete holê, li dinyayê belav bû: Dewlet, li gel wê jî netew-dewlet.

Her netewek, lazim e xwedî statuyeke xwe birêvebirinê be. Bi halê herî mutewazî be jî navê vê dewlet e.

Lewra tê dîtin ku deverên wekî Vatîkanê nifûsa wê nagihîje hezarî jî xwedî statuya dewletbûnê ye. Helbet fikra dewletê li ser ewlehî û aramiyê ava bûye. Lê ev sîstem ne tenê ji bo vê yekê heye. Ev herwiha ji bo tayînkirina îradeya milletan û parastina xweseriya wan jî pêwist e.



# Kurdistan ber bi dewletbûnê

Kurdistan, bi gavên mezin ber bi serxwebûnê ve yanî dewletbûnê ve diçe. Di rojeva îro de yek ji mijarên serekî li Rojhilata Navîn dewletbûna Kurdistanê ye.

Helbet ji ber ku bûyerên li vê herêmê diqewimin, dewletên zilhêz jî elaqedar dike, di rojeva hemû dinyayê de ye. Hesab û kîtabatên dewletên mezin li ser bûn an jî nebûna serweriya Kurdistanê ye.

Helbet dema ku dewletbûyin bibe dabaşa mijarê bala her kesî diçe ser dam û dezgehên Kurdistanê. Hîmên binehîn ên wekî ewlehî, perwerdehî, aborî, leşkerî û çekdarî divê di sîstemên wisa de hebin. Li gel van îstîxbarat û tecrubeya siyaseta rêvebirinê.

Li Kurdistanê tecrubeye baş a siyasî heye. Lewra kurd sed salan e di nav vî karî de ne û hetanî fêrî vî pîşeyê bûne qelenên bêjimar dane. Aborî, dewlemendiyên Kurdistan ên binerdê têra temînkirina jiyana hemwelatiyan û dabînkirina pêwistiyên ewlehiyê heye. Ji hêla leşkerî û çekdarî ve jî, piştî tecrubeya DAIŞ'ê, Kurdistanê pêvgaveke mezin avêt. Ew wextên teng û nexweş li pey xwe hişt. Ji hêla perwerdehiyê ve jî, jixwe ji tarîxeke kevin ve li vê coxrafyayê dersên Kurdî hebûn û materyalên niha jî ji bo destpêkê îhtiyacekê diqedînin.

**Kurd, dewletbûn û ewlekarî**

Dema ku peyva dewletbûn û Kurdistanê bêne cem hev, yekser asayiş û parastin tê bîra her kesî. Lewra di damezrandina dewleteke ku derdor tijî dijmin in de tişta esasî parastina jiyan û malê xelkê ye. Eger mekanîzma ya ku tê damezrandin, ewlehî û aramiyê li welat peyde neke, ew nabe dewlet. dewlet be jî dê birûxe, hilweşe.

Tecrubeya DAIŞ'ê, nîşanî me da ku bi taybetî li Rojhilata Navîn, asayiş şertê yekemîn ê dewletê ye. Sokrates, Platon, Konfiçyus, Marks, Hegel, Farabî û teorîsyenên wek wan her yekî dewleta zêhnê xwe ava kiriye. Eger DAIŞ, dîtibana dê gotibana ewlehî û bes... Barzanî, di vê çarçoveyê de fîlozofê serdema xwe û pratîsyenekî serkeftî yê Rojhilata Navîn e. Lewra, li erdîmeke ku şer, pevçûn, kuştin, xwîn, talan, dagir, destdirêjî û her cure dijmirovahî lê diqewimin, sahileke selametê ava kiriye. Kariye di nav cehennemê de hênikahiyeke bêhnberdanê ava bike. Serok, wezîr û rêvebirên welatan dema diçine Kurdistanê, xwe nagirin û sipasiya Barzanî dikin ku derfetekî wiha ji bo hemwelatiyan peyde kiriye.

Guman tuneye ku yek ji çavkanî û faktora aramiya Kurdistanê, xweşguzeranî û bihevrejiyanê Ajansa Encumena Asayîşa Kurdistanê ye. Li Başûrê Iraqê rojanê 10-20 bombe diteqin û bi sedan hemwelatî dibin qurbanî. Lê li Kurdistanê, heta ku hêza terorîst teqînekê li devereke Kurdistanê çêdike, bêjimar ziyanan dide û piştre jî ji hêla Encumena Asayişê ve têne deşîfrekirin. Herwiha di teqînên wan de wendahiyên kurdan hebin jî, xesarên mezin nayên holê.

# Berken Bereh
# Çarenûsa kurdan



Kalê Badî

Wek her kurdek dilşewat ku dixaze di nav daristana cîhanê de ew jî bibe dareke bejin bilind û bi serfirazî bijî. Daxwaziyên wî ji daxwaziyên kurdekî ji kuçe û kolanan pir ne cuda ne. Lê belê behredariya sazkirina peyvên hevokên helbesta wî, ew ji me vediqetîne û dike payandar. Li gel helbestên wî, me bi Berken Bereh re li ser helbest, wêje û rewşenbîriya hemû partên Kurdistan û kurdên dîasporayê hevpeyivîn.

**Te çima xwe avête nav vî agirê kurdewar û te çawa destpê kir?**
Min di sala 1978'an de dest bi nivîsandina kurdî kir. Berhema min a yekem di kovara Tîrêj'ê ku yekem kovara xwerû bi kurdî ango tenê bi kurmancî û zazakî dihate derçûn hate çapkirin. Bêguman min bi helbestê destpê kir. Ji ber ku hê ji zaroktiya xwe ve min bêtir behreya helbestê di xwe de didît. Ji bo min beşa hunerê ya ku mirov dikare xwe tê de der bike û bi jiyanê re têkiliyeke durust deyne helbest bû û ev feraseta min hîna jî neguheriye. Ji ber vê yeke jî, ji bilî helbestê min tu tişt nenivîsand. Heta niha 8 berhemên min hatine çapkirin. Niha xebateke min a li ser helbesta kurdî heye, lê mixabin ev çend sal in ez dikim nakim xelas nabe. Ez hewl didim ku vê xebatê biqedînim. Ji destpeke ve, min her bi çavekî amatorî li helbestkariya xwe niheriye. Li gor min ev nêrîn, ji bo helbestvanekî, hewldan û têgihîştina herî pîroz e. Roja ku ez bêjim min helbestê baş nivîsan, ew metirsî bi min re heye ku ez ew roj têk biçim. Ji ber vê yekê jî her ruhekî amatorî bi min re heye. Ez li ser helbestên xwe pir radiwestim. Heta ku dilê min lê goncivî û min got; 'vaye hestên min hineki anî ziman' wê gavê êdî ez dest ji wê helbestê berdidim. Di nav beşên wêjeyê de helbest, beşa herî helûn, beşa herî mirovperwer û aştixwaz, beşa heri afirîner û beşa herî neteweperwer e. Ji ber vê yekê jî, hemû teorîsyenên wêjeyê dibêjin tenê helbest neteweyî ye; Ji ber ku helbest karekî afrînerî ye û ev afrînerî bi ziman destpê dike. Mirov dikare romanekî yan jî çîrokekî bi awayekî binivisîne. Lê ger ku tu zimanê xwe baş nezanibî, eger tu wateya peyva xwe baş nezanibî û eger tu wê baş nasnekî, tu yê nekaribî helbesteke baş a wê neteweyê binivîsî. Ji ber vê yekê ye, tu helbest nikare li zimanekî din bê wergerandin. Tenê tu dikarî bi wî zimanî, wê helbestê ji nû ve binivisînî. Wekî din Berken Bereh, dixwaze bi kurdî bijî, wek kurdekî dinyayê temaşe bike, weke kurdekî xwe der bike, dixwaze bi kurdî bextewar bibe, bi kurdî biqehire û weke kurdekî serbixwe û azad bijî weke çiyayên xwe.

**Rewşenbîrî û wêjeya kurd niha di asteke çawa de ye?**
Rewşenbîriya kurd bi êş û kul e. Rewşenbîrên kurd li dij hemû zor û zehmetiyên li ser ziman, her li ber xwe dane û xwestine ji bo civaka wan jî bigihîje asta civakên din ên dinyayê, ked dane û helwestiyane. Lê mixabin dîsa jî nekaribûne di nav gelê xwe de bi awayekî zanistî berhemên xwe bidine hezkirin an jî pejirandin. Sedemên vê gellek in. Yek ji van sedeman ew e ku zilm û sitemkariyeke mezin li ser rewşenbîrên kurd heye. Hemû dagirkerên kurdan, heta ji dest wan hatiye, nehiştine ku rewşenbîrên kurd dikaribin bi awayekî asayî, di nav gelê xwe de têkiliyeke durust deynin. Her tûşî neheqî û sitemkariyê bûne. Çîroka rewşenbîriya kurdî bi van mînakan dagirtî ye. Em dizanin ku di gorankariya 12'ê Îlonê de jî, bi sedan rewşenbîrên kurd di zindana Amedê de hatine dîl girtin û bi gellek zilm û tadeyiyên dijwar rû bi rû mane. Ev helwesta tûnd a dagirkerên kurdan li ser rewşenbîrên kurd bû. Lê mixabin siyasetmedarên kurd, di warê çand û kelepora xwe de pir lawaz in û ez dikarim bêjim ev yek ne xema wan e jî. Ji ber vê yekê jî rewşenbîrên kurd di nav gel de nehatine naskirin û berhem û ramanên wan xwe negihandine civaka xwe. Weşangeriya kurd jî, ji ber bi rêk û pêk nîne û xwedî aboriyeke qels e, nekaribûye berhemên kurdî bi awayekî asayî çap bike, biweşîne, belav bike û bigihîne rewşenbîran. Lê îro kar û xebatên baş ên ku em kêfxweş dikin jî hene. Ez gellekî dilgeş û serbilindim ku sazî û dezgehên kurd, îro gihîştine astekê û em dibînin ku kurd bi şaredarî û sazî û dezgehên xwe kêm be jî desthilatdarin. Lê xwezî ev desthilatdarî ji bo kelepora kurdî û ji bo pêşvebirin û nasandina çanda kurd bêtir hewl bida xwe. Ji bo rewşenbîr û nivîskarên kurd bikaribin têkiliyeke têr û durust bi civaka xwe re deynin pêdivî bi sazî û dezgeh û hewldanên çandî û wêjeyî heye. Rewşenbîrekî bi tena serê xwe nikare di asteke bilind de bi civaka xwe re danûstendinekê bike. Nivîsandina berhemekê têra xurtkirina vê têkiliyê nake. Divê bi tora çapemeniyê û hemû alavên ragihandinê, rê li ber nivîskar û rewşenbîrên kurd were vekirin da ku dikaribin vê têkiliyê pêk bîn in.



**Niha di nav rewşenbîriya kurd a perçeyên din de danûstendineke çawa heye û divê çawa be?**
Ji bo têkilî baştir bibin, ev çend salên dawî ne hewldan hene. Gellek caran niviskar û rewşenbîren bakur û başûr hatine cem hev, bi hev re panêl û konfêrans amade kirine, her wiha bi rêya kovar û rojnameyan berhemên xwe belav kirine û rê li ber danasîna zarava û wêjeya beşên din ên kurdistanê vekirine. Lê ev du sal in, ji ber pirsgirêkên bi Bexdayê û di çend mehên dawî de jî ji ber şerê bi DAIŞ'ê re, bernameyên bi rêk û pêk çênabin. Lê ez pê bawer in ku di siberojê de wê ev pirsgirêk çareser bibin. Di nav wêjeya bakur û başûr de gellek pirsgirêk hene. Ji hêla naverok, form û şêwazê ve, em dûrî hev in. Sedemên vê yekê jî dagirkeriya bi sedsalan û sînorên ku di nav Kurdistan de hatine xêzkirin û bikaranîna alfabeyên cûda ne. Van sedeman nehiştine ku hemahengiyek û hevsengiyek di navbera edeba me û ya başûr de pêk bê. Lê belê ji bo nêzîkkirin, hevnasîn û hemahengiyê, hewldan hene. Hêvîdarim ku nêzîkahiyek di navbera me de çêbibe û em bibin xwedî kantoneke kurdiya resen û her yek ji me bibe bingehê vê kantonê. Di vê babetê de jî bêtir bar dikebe ser milên dezgehên me yên çandî û hunerî û siyasî. Ne bi siyasiyan be, mixabin rewşenbîr bi serê xwe nikarin van têkiliyan baş bigeşînin.



# yekîtiye



**Di geşedandina kurmancî de wê Rojava dikaribe roleke çawa hilgire ser xwe?**

Rojava yan jî Binxet, di rewşenbîriya kurdî de xwedî dîrokeke piroz e. Binxet, ji bo kurmancî, destpêka ronakbîriyê ye. Celadet Bedirxan û hevrêyên xwe, li binxetê û Şam'ê kovaran derxistine û berxwe dane. Hawar, damezirînera kurmancî ya bi tîpên latînî ye. Wê rê li ber kurmacî vekir û di warê wêjeyê de pêşî li kurmancî vekir. Ji ber vê yekê jî ez dibêjim kurmanciya resen a ku îro tê bikaranîn bêtir li Rojava ye. Kurdên Rojavayî, tu carî li malên xwe bi erebî neaxivîne. Di danûstendinên xwe yên rojane û yên siyasî de jî her bi zimanê xwe bikaranîne. Ji ber vê yekê jî kurmanciya Rojava ji bo me kurmanciya herî dewlemend tê hesibandin. Jixwe em vê standardîzasyonê jî di berhemên kurmancî yên li Bakur û Rajava têne nivîsandin de dibînin. Wekî din ev berxwedana Kobanê, di cîhanê de tekane mînake û şayanî pîrozkirinê ye. Ji bo rewşenbîriya kurdî, Kobanê derfetên baş diafirîne, ji ber ku her seeteke Kobanê dikare bibe mijara helbest, roman an jî çîrokekê. Her wiha ev berxwedana Kobanê moraleke mezin daye hemû rewşenbîrên kurd da ku bikaribin bêtir baweriya xwe bi zimanê xwe û çanda xwe bînin û berhemên hêjatir binivisînin. Rewşenbîrên Rojava, di warê romannûsiyê de gellek pêşketî ne û ji bo bakur bûne modêl.

**Di qada entellektueliya Tirkiyeyê de kurd dikarin çiqas xwe bînin ziman û di vê para xwe anîna ziman de çiqas kurdewar in?**

Hewldanên nasîn û danasîn û têkiliyê hene. Nêzîkî 10 salin nivîskarên Bakur bi ser PEN'a KURD û Komeleya Nivîskarên Kurd ve bi rewşenbîr û nivîskarên tirk re di nav têkiliyan de ne. Lê ji ber ev têkilî ne têkiliyeke pêşketî ye, ne bi dilê me ye. Sedemên vê yekê gellek in. Yek ji van sedeman ev e; Dezgehên kurd ji bo pêkanîna têkilyeke durust nekaribûne bi rêxistinî tevbigerin. Têkilî tenê bi ser kesan pêk hatiye û ji ber vê yekê ev têkiliyên bi vî rengî nagihîjin encamekê. Yanî, wek tradîksiyonên cûda nayên zanîn. Ez dixwazim têkiliya di navbera entellektuelên tirk û kurd de bi ser dezgehan ve pêk bê, ne bi ser kesan ve. Dema bi ser kesan ve ev têkilî tê sazkirin ev têkilî tafilê diqede lê eger bi ser dezgehan ve pêk bê, wê domdar be. Ez dixwazim bi ser sazî û dezgehên xwe û bi şêweyeke yeksan




têkilî bimeşin, ne bi rîwangeyeke serdestî û bindestî.

**Tu rewşa rewşenbîriya kurdên li Ewropayê çawa dinirxînî?**

Piştî salên 70 û 80'yan gellek xortên kurd ji ber zora dewletê berê xwe dane ewropa û li Ewropa gellek karên baş û hêja pêk anîn. Kovar û rojnameyên kurdî derxistin, di warê rewşenbîriyê de roleke baş leyîstin, bandoreke baş li rewşenbîriya hemû perçeyên Kurdistanê kirin; lê mixabin îro ew rewa berê nemaye. Îro kurdên li Ewropayê bêtir di bin çand û şêweyê jiyana civakên ewropî de ne. Ne karibûn bibin kurdên xas, ne jî karibûn bibin ji neteweyên ew welatên Ewropa yên ku lê dijin. Û piştî salên 2000'an, piştî ew pêla balabûna rewşenbiriya bakur, yên li Ewropayê bêçar man; an ewê vegerin Kurdistan an jî ewê têkiliyeke xurt bi rewşenbîrên li welêt re deyînin. Êdî rewşenbîrên Kurdistan ne hewcedarên Ewropa nin. Êdî rewxenbîriya kurd hatiye Kurdistan û li ser bingeha xwe rûniştiye.



# Bajarê yezdanên

# SEMSÛR

Welat Baz

Semsûr û navçên xwe liser lûtke û zozanên Torosên başûrê rojhilat ku ji alî milên Firadê ve hatine dorpêçan, avabûne.

Semsûr, di nav hêlîlarên bakûr ê 37 û 38 û hêlîpanên rojhilat ê 37 û 39an de cîh digre.

**Erdnîgar**

Pîvana xaka Semsûrê 7.614 km² ye. Rewşa erdîma heremê wiha ye; Çiya % 52,2, deşt % 10.7, zozan % 3, plato % 34.1. Bilindahiya bajêr ji deryayê 725 metre ye. Di erdnîgara bajêr de noqta herî bilind Çiyayê Spî ye ku 2551 metre bilind e. Çiyayên Semsûrê ê din jî evin: Çiyayê Dîbek, Çiyayê Girlawik, Çiyayê Kortik, Çiyayê Nemrûd, Çiyayê Bêzadê, Çiyayê Borik, Çiyayê Rûtika, Çiyayê Sincik û Çiyayê Reş.

**Maden**

Xaka Semsûrê ji alî madenên binerdê ve dewlemend e. Petrola ku li Semsûr û nêzî navçe ya Kolikê, ji sala 1958'an vir ve tê derxistin, gelek bi qalîte ye û li vê deverê rezerwên fireh hene.

Semsûr di hilberîna petrolê de li Bakûr di rêza yekem de ye. Ji bilî petrolê li navçe ya Besnî sifir, qrom, gulle û fosfor, li Çêlekan, hesin, sifir, qrom û prît, li Gergerê, gulle, prît, qrom, sifir, li Serêgolê, manganez, amyant, hesin, qrom û prît, li Kolik; petrol, gule, qrom, sifir, li Semsûrê, rijû, qrom, petrol, prît û sifir derdikeve.

**Deşt**

Di xaka Semsûrê de dû deştên mezin tenê hene û bi navê deşta Kolik û deşta Semsûr tên zanîn. Firehiya van deştan digihîje 800 km² yî. Ev deşt di erdîma bajêr de ji % 10 cîh digrin û li beranberê keviyên Firadê dirêj dibin. Ji kiştûkala ser van deştan û zewiyên din, berhemên wek genim, trî, titûn û fistiq tên çinîn. Ji % 88ê gelê heremê bi karên kiştûkal û lawirvaniyê mijûl e.
Titûna Semsûrê gelek navdayî ye û berhema sereke ye. Li ser 2 hezar hektar ax titûn tê çinîn. Ji ber ku tesîsên titûnê jî hatine çêkirin, gundî jî berê xwe dane ajotina vê nebatê. Li Semsûrê bi hezaran kes bi ajotina titûnê debara mala xwe dike.
Lawirvanî jî di jiyana Semsûrê a aborî û civakî de cîhekî taybetî digre. Lê lawir xwedîkirin hîn jî wek şuxlekî malbatî didome. Tesîs û ûsilên modern nayên bikaranîn.

**Çem**

Xaka Semsûrê ji alî çavkaniyên avê ve gelek dewlemend e. Ji çiyayên Meletiyê, ku ji bakûr ve li Semsûrê lefiya ne, bi dehan damarên avê dizên. Ev damar li nêzî bajêr tevlî Firadê dibin. Firad di tixûbê nav Semsûr, Meletî û Rihayê diherike û berê xwe dide Deşta Harranê.
Piştî çemê Firadê, li erdîma Semsûrê, mezintirîn av çemê Reş e. Çemê Reş ji çiyayê Nûrheq dizê û piştî 150 km dirêjdibe tevlî Firadê dibe. Çemê Sofraz, çemê Xalbûrcî, çemê Ziyaretê û çemê Kolik jî xaka Semsûrê av didin.
Zêdetirê çeman, Semsûr ji alî golên xwe ve jî erdnîgareke balkêş e. Sê golên mezin; Gola Ezeban (4km²), gola Çêlekan (3 km²), Serêgolê (5km²) û gola Ebdilxerab (2.5 km²), ku li nêzî navçên Serêgolê û Çêlikan in, gelek kûrin û nawenda masîvaniyê ne.
Li Semsûrê bi navê Bisk Îlxan, Potukxan û Bîşor, li Besniyê bi navê çemê Ziwa û Çormûk, li Çêlikan jî bi navê Qorîcax çend germav û avên madenî hene. Gelê derûdorê, ji bo nexweşiyên wek bayê, tên van germavan û li şîfa digerin.

Herwiha li dora bajêr û li ser rêya Meletiyê gelek daristanên geştê û seyranê hene ku Semsûrî germa havînê li van daristanan derbas dikin.



Bendava GAP'ê ku li Kurdistanê gola herî mezin a bendavê ye, 40 km nêzî Semsûrê li ser çemê Firadê ye. Bi avakirina bendawê ve gelek zêwî hatine îstîmlaqkirin. Gundiyên ku ji ber vê yekê koçkirine, berê xwe dane Kolik û Semsûrê.
Piştî avgirtina bendava GAP'ê gelek berhemên dîrokî ê Semsûrê di bin avê de man. Navça Samsatê ku bajarekî kevnare bû, bi giştî dibin avê de ma û bi heman navî navçeyeke din hat avakirin. Berhemên ku ji ber ava Firadê hatin rizgarkirin di muzexaneyên Semsûr û Antaqyayê de tên parastin.

**Rêvebirî**

Semsûr li gor pergala rêvebiriyê, ji sala 1954'an vir ve parêzgeh e. Bi navên Kolik, Serêgolê, Tût, Gerger, Çêlikan, Samsat û Besnê, heft navçe û 346 gundê wê hene. Şêniya bajêr li gor hijmarên îro nêzî 700 hezarî zêdetir e.

Semsûr ji bakûr ve cîranê Meletiyê, ji rojava ve cîranê Gurgûm, ji başûr ve cîranê Ruha û Dîlok, ji rojhilat ve jî cîranê Amedê ye.

Bajêr tevî navçên xwe ji % 90 kurd e. Li Besnî, Gerger û Tûtê hin Tirkmen û li deverên din jî çend malbatên ermenî û suryanî hene. Qismekî kurdên Semsûrê elewî ne û zarava kurmancî diaxifin. Kurdên din sunî ne û ew jî bi kurmancî diaxifin.
Semsûr wek gelek deverên Kurdistanê bênderekî gel û eqaliyeta bû. Heta salên 1960an jî li bajêr û navçeyan gelek ermenî û suryanî hebûn. Li nav Semsûr Taxa Seraya Kevn wek, 'Taxa Gawiran' dihat naskirin û niştecihên vê derê bi piranî ermenî û suryanî bûn. Lê piştî salên 1960'an ji ber zextên olî û siyasî, ev rengên bajêr çilmisîn. Niha li bajêr tenê çend malbatên Îsewî mane.

Komara Tirk jî navê bajêr di fermiyetê de wek Adiyaman pejirandiye.





# kevnare

**Dîrok**
Qronolojiya Dîroka Semsûrê
Berî Zayînê
1650-1340 Dema Hîtîtiyan
1340-1000 Dema Hûrrî-Mîttaniyan
1000-708 Dema Şaristaniya Kummûh
708- 605 Dema Asûriyan
69-(p.z) 72 Dema Kommagene
Piştî Zayînê
72-395 Dema Romayiyan
395- 636 Dema Bîzansiyan
670- 758 Dema Emewiyan
1226 Dema Selçûqiyan
1293 Serhildana Babayiyan
1517 Dema Osmaniyan
1596 Serhildana Evdal li Kolikê
1925 Dema Komara Tirk

Di lêkolînên ku di nav şikeftên Semsûrê de hatine kirin de, rêçên 3 hezar sal b.z hatine tesbîtkirin. Di dîroka nivîskî de jî, 2 hezar sal b.z behsa heremê têkirin. B.z di salên 165'0an de herema Semsûrê di destê Hîtîtiyan de bûye. Di çavkaniyên Boxazkoyê de hatiye tesbîtkirin ku bi navên Ûrşu û Haşû dû bajarên li herema Semsûrê, ji alî Qral Telepînûs yê hîtîtî ve hatine xerakirin. Piştî sedsala 14an herem dikeve destê




Hûrrî-Mîttaniyan. Hûrrî-Mîttaniyên arî wek pêşengên kurdan tên zanîn. Li gor hin lêkolînan nivîsên şikeftên Çiyayê Nemrûdê ji hûrrîyan mane. Piştî salên 1000'î hata salên 700'an li heremê kummûhiyan, sed sal şûnde jî asûriyan û heta salên 333'an jî persiyan li Semsûrê hukum ajotine.
P.z heta ku artêşa ereb yên Musluman heremê dagir bikin, bi dorê; helenî, selokîdî, komagenî, romayî û bîzansiyan li heremê hukum ajotin. Şaristaniya Kommagene, li ser çiyayê Nemrûdê ji dîrokê re berhemên giranbiha hiştine.
Piştî salên 1070'î herem di nav destên selçûqiyên tirk û eyûbiyên kurd de dest guhert. Di dîroka Semsûrê de bûyereke eceb Serhildana Babayiyan a sala 1240'an e. Bi gotinên Dîroknûs Îbnî Bîbî, 'Gelê Anatolya û Kurdistanê wek kulmorî û kuliyan di heman rojan de, bi heman armancî serhilda bûn.' Ev serhildana ku Baba Îshaqê Şiî serokatî dikir, li dijî zilma Selçûqiyan bû. Di serhildanê de bi hezaran kes hatibûn kuştin.
Semsûr heta dikeve destê Osmaniyan, di nav mîrên kurd, moxol û memlûkiyan de dest duguhurîne û dibe qada dagir û talanê. Piştî desthilatiya Osmanî destpêdike jî, di salên 1596'an de kurdên Kolikê li dijî Osmaniyan serhildidin. Di encama vê serhildanê de herem vala dibe û gelek kes tên kuştin. Osmanî heremên ku bidest dixistin, bi eşîrên tirkmen ve dadigirtin û van eşîran wek mîlîsan bikar dianîn. Dewleta Osmanî vê siyasetê li Semsûrê jî pêk anî. Li heremê gelek car eşîrên tirkmen û kurdan serhildidan. Di encama talan û şeran de jî xela û koçberî derdiket.
Semsûr dema ket destê Osmaniyan, wek bajarokekî Besniyê bû. Piştî salên 1563'an jî wek navçeyekî bi Gurgûmê ve hat girêdan. Li gor salnameyên van deman, nifûsa bajêr ji % 10 ermenî bû.

**Kele**

Kela bajêr li ser girekî çêkirî hatiye avakirin. Di navbera sedsala 8'an de ji alî fermandarê emewî Mansûr Îbnî Cawana ve li dijî êrişên Bîzansiyan hatiye çêkirin. Kelê navê ,Mansûr' girtiye û wek 'Hisnî Mansûr', yanê ,Kela Mansûr' hatiye binavkirin. Di demên paşîn de ev kele bûye nawenda bajêr. Di dawiya sedsala 8'an de ji alî Xelîfe Harûn Reşîd ve hatibe tamîrkirin jî, niha wek xirabeyekî ye.
Li herema Semsûrê gelek kelêyên din jî hene. Ji vana ê balkêş kela Kolikê, kela Gergerê, kela Besnê, kela Keysûn û kela Samsatê ne.

**Mizgefta Mezin**

Semsûr ku nawenda berhemên kevn e, xwedî gelek mizgefta ye jî. Mizgefta Mezin, di dema Dûlqadiriyan, ji alî Alaadewle Beg ve hatiye çêkirin. Mizgeft ji ber ku xerabiye di sala 1863'an û 1902'an de dû caran hatiye restore kirin. Dîwarên mizgeftê ji kevirên birrandî ne. Sê deriyê wê hene. Motîfên ser perçên dar ku ji gûzê ne, balkêşin. Bingeha minarê li ser kevirên çargoşe, bejna wê ji kevirên giloverin. Şerefeyekî camiyê heye.
Ji bilî wê, bi navên mizgefta Seraya Kevn û mizgefta Kaniya Nû dû mizgeftên dîrokî jî hene. Li Besniyê jî çar mizgeftên dîrokî hene. Dîsa li Semsûrê û derdorê gelek tirbeyên balkêş hene.
Xaniyên Semsûrê jî di demên kevn de xwedî mîmariyekî balkêş bûn. Di stîla mîmariya xaniyan de rêçên ereb dihat dîtin. Orjînalîteya van xaniyan di salên dawîn de xerabûn û hin perçeyên din bi van ve hatin îlawekirin.



**Şikeftên Pirrîn**

Ecêbiyeke erdnîgara xaka bajêr şikeftên deverê ne. Şikeftên Semsûrê ji b.z ta niha, wek cîhên rûniştinê hatine bikaranîn. Şikeftên Palas, Heyderan, Pirrîn, Zey, Moxil û kela Hesin li derûdorê bajêrin û ji ber neqş û nivîsên dîwarên xwe, bala turîstan dikşîne.
Di nav van şikeftan de yên Pirrîn gelek balkêş û dîrokîne. Li gor lêkolînên arkeologan, tenê li herema Gundê Pirrînê 208 şikeft hene. Dîwarên van şikeftan bi resmên ku jiyana 2 hezar sal berî zayînê, tîne ziman, hatine neqişkirin.



**Sûk**

Kurdên Semsûrê herçiqas li bajêr bijîn jî, di jiyana xwe de gelek xetên kevneşopî jî diparêzin. Di sûka bajêr de jiyana modern û jiyana klasîk di nav hevde ne.
Di sûkê de ji aliyekî ve otomobîlên nujen û biha, ji aliyekî ve jî nalbant, kurtanvan û hesp bihevre tên dîtin.
Sûka Semsûrê ji alî hunermendiyên destan jî pêşketî ye. Di gelek malan de xalî û kilîmên desta tên bikaranîn. Semsûrî li ser xaliyên xwe bi rengên cûrbecûr motîfên cîhêreng bikartînin.
Semsûr ji ber ku ji aliyê madenan ve, bi taybetî jî, ji alî sifirvaniyê ve dewlemend e, di hunermendiya madenî de jî pêşketiye. Sifirvanên Semsûrê bi piranî berhemên mitfex û rewşê çêdikin.

**Reqsên Semsûrê**

Taybetiyeke Semsûrê reqsên gelêrî û leyistikên folklorî ne. Grûbên folklorê ên Semsûrê gelek caran xelatên navnetewî girtine. Reqsên sereke ê vê heremê, bi navên Giranî, Rêzanî, Berde, Dêriko, Dîko, Lorke û Tirpanî tên zanîn. Reqsên Semsûriyan wek berhemên kevn ê bajarê wan dangdayî ye.



## Qetilkirina xweza,

# Talana xwezayê:




Mustafa Kılıç

Kurdistan, ji ber ku bi hezar salan bûye qada pevçûn û domandina jiyana şaristaniyan û sirûşt û dîroka wê tarûmar bûye, di 40 salên dawî de, ji ber şer û pevçûnan ev tarûmarî gihîştiye asteke dijwartir. Li gel şewitandina daristanan ku di salên şer de ji rojevê danediketin û angaştên bikaranîna çekên kîmyewî, di 20 salên dawî de geşedaneke ku ji pêvajoya asîmilasyonê re xizmet dike pêk tê. Projeyên Santralên Elektrîka Hîdron (HES) ên ku hem cîhana ziman a kurdistaniyan di bin avê de difetisîne, hem jî herikîna dîrokî ya hezar salan radiwestîne, her çiqas li gellek deverên Tirkiyeyê jî bêne meşandin jî, diyar e bi taybetî li Kurdistan, bi şêweyeke plankirî û gelemper têne pêkanîn. Lewre, dema mirov li qadên ku ev proje têne pêkanîn dinihêre, diyar dibe ku ev proje li deverên weke Dêrsim ku li dij polîtîkayên dewletê bi tûndî têdikoşe û deverên awarte yên weke Heskîf, ku hînterlanda dîrokî ya Kurdistanê mîsoger dike têne pêkanîn. Her wiha li gundên elewiyan yên Semsûrê ku komên olî yên li vê deverê bi tevgera siyasi ya kurd re digoncivin, ev proje pir têne bikaranîn.
Diyar e ku dewlet, projeyên HES'ê, li Kurdistan, di çarçoveya plansaziyeke taybet de pêk tîne. Ji ber ku li Kurdistan hemû awir li ser partîzaniyan tûj bûne, xuya ye ev rewş nahêle ku mirov an jî civaka kurd bala xwe bide ser xeteriya HES'an. Lewre, benda hilbijartinan a ku hemû siyasî û tevgerên kurd lê daleqandî mane, di rastî de daxistina bendên avê yên ku xeteriya herî mezin in dide piştguhkirin. Bêguman, ji ber ku hemû awir li ser rojevên demkî tûj bûne, li dij van polîtîkayên dewletê bertekeke xurt nageşin. Ji ber vê yekê jî, li herêmên din ên Tirkiyeyê, ji ber ku gelên herêmê bertekên tûnd nîşan didin ev projeyên dewletê têne rawestandin, lê belê çêkirina piraniya bendavên Kurdistan bê navber dom dikin.
Li Tirkiyeyê, li 69 bajaran bi giştî 478 HES hene. Tê plankirin ku li 61 bajaran 534 HES'ên din jî bêne çêkirin û ger ku ev plan pêk bên, wê li 71 bajaran, hejmara HES'an bigihîje 1012'an. Çêkirina160 ji van HES'ên ku hatine plankirin, niha dom dikin. Di derbarê projeyên HES'an ên li Kurdistanê de Endama Lijneya Ekolojiyê ya Kongreya Civaka Demokratîk(KCD) Şeval Şenyurt ji rojnameya me re ragihand ku li Tirkkiyeyê ji hezarî bêtir projeyên Hes'ê hene, li Kurdistanê 20 bendavên ku qediyane û 126 projeyên Hes'ê yên ku niha dom dikin hene. Şeneyurt, diyar dike ku çêkirina van bendavan, ewê rê li ber valakirina bi sedan gund û koçkirina bi hezaran mirovan veke û li gel guherîna demografyayê, wê bi xwe re mexdûriyeteke mezin a mirovî û têkbirina gellek qadên ku di xwe de berhemên bi nirx ên dîrokî dihewînin bîne rojevê. Şeval Şenyurt, li gel valakirina gundan, bi zorê dakoçkirina şêniyên van gundan û armanca dewletê ya ewlehiyê, balê kêşa ser têkbirina berhemên dîrokî yên arkeolojîk yên ku ji bin erdê hatine derxistin û yên ku heta niha nehatine derxistin û dom kir: "Berhemên dîrokî yên ku li Newala Çorî hatine derxistin bingehên dîroka dihate zanîn ku ji Someriyan destpê kirî ye têk bir û bi me da zanîn ku dîrok ne ji Someriyan destpê kiriye, beriya Someriyan destpê kiriye. Bi avakirina bendavan, li gel Newala Çorî, wê gellek deverên tê angaştin ku di bin axa xwe de berhemên dîrokî yên bêhempa dihewînin, di bin avên van bendavan de wunda bibin. Ev babet bi serê xwe qirkirineke mezin a dîrokê ye.


S. Akan

Li herêmên ku HES lê têne çêkirin niştecih, bi çalakiyên mezin bertekên tûnd nîşan didin. Lewre HES, hem ziyaneke mezin didin pêwendiya mirov û sirûştê, hem jî pircûrehiya nebatan têk dibin. Aşkere tê dîtin ku di bergîdana pêdiviya enerjiyê de ekolojî, çand û dîrok tê talankirin. Ger ku mirov pêvajoya ku ji qirêjîkirina avên vexwarinê, bikaranîna avên bin erdê ku nikare ji nû ve bêne paqijkirin, guhertina şîpên avan, bandora guherîna îqlîm a li ser çavkaniyên avî ku dibe sedema germbûna dinyayê, ji bo çandiniya endustriyî bi dijwarî sondajkirina avên bin erdê û kêmbûna avên vexwarinê yên dinyayê bidozîne, mirov bi hêsanî dikare qeyrana ku dinya ber bi wê ve diçe bibîne.

**Li Kurdistanê tekoşîna li dij HES'an**

Li Kurdistanê, me li ser du projeyên HES'ê ku niha dom dikin lêkolînekê kir. Di derbarê van projeyan de me nêrînên gundî û berpirsên herêman guhdarî kir. Ji bo em di derbarê Bendava Ilısu ya ku li ser Çemê Dîcleyê tê çêkirin û ji Kerborana Mêrdînê heta Basan'a Şernexê, herêmeke mezin di bin avê de dihêle û ji ber bertek û tekoşîna bi rêxistinî ya niştecihên herêmê çêkirina wê niha hatiye rawestandin agahdar bibin, me serî li Hevserokê Şaredariya Kerborana Mêrdînê Sînan Akan da. Akan, balê kêşa ser bandora bendavê ya li ser niştecihên herêmê û ragihand ku hemû wargehên ku di firehiya vê bendavê de cih digirin hatine valakirin, li gel gundên Heskîfê, gundên wek Miştê, Çelik, Zewe, Germave, Germero û gellek gundên din hatine valakirin. Akan got: "Her tişt ji sirûşteya xwe hatin dûrxistin û ji bo ev herêm bê valakirin, li ser gel zext hatin pêkanîn. Li gor em dibihîzin ev bendav ji %70 hatiye temamkirin, lê belê bi saya tekoşîneke bi rêxistinî niştecihên herêmê di karê bendavê de naxebitin. Me hewl da em ji gelê xwe re vebêjin ku armanca meşandina polîtîkaya projeyên HES'an, asîmîlekirina dîrok û nasnameya Kurdistanê ye"

dîrok, çand û jiyanê

# HES




Akan, wiha dom kir: "Bi hinceta çêkirina bendavan, avakirina qereqolên ku li ser palên bilind û rêya makî ya Kerboran û gundên wê van gumanên me piştrast dikin. Em hemû dizanin ku armanca Bendava Ilısu'yê ne çêkirina Santrala Elektrîkî ya Hîdron e, berovajî; ewlehî ye. Em baş dizanin ku ji sedema vê bendavê 19 qereqolên nû hatin çêkirin û em dibînin ku di van demên dawî de tevgerîn û arastekirineke leşkerî pêk tê"

'Santrala Ewlehî û Elektrîka Hîdron a Alasu' ya ku 7 kîlometr li bakurê Hîzana Bedlîsê, li ser Çemê Şeftalan ku milekî Çemê Botan e, weke projeyên din ên HES'ê ku têne xwestin li Kurdistanê bêne çêkirin, bi navê xwe jî diyar dike ku projeyeke ewlehiyê ye. Çetîn Gul'ê ji Gundê Aladanê ku weke hemû gundiyên xwe debara xwe bi xwedîkirina mozan dike, di derbarê rewşa dawî ya vê bendavê de ji rojnameya me re ragihand ku ji bo wê herêmê 3 projeyên HES'ê hatine amadekirin û niha pêkanîna van projeyan destpê kirine. Çelîk wiha got: "Piştî dest bi çêkirina van projeyan kirin, avên kaniyên gundê me kêm bûn û pirsgirêka avê destpê kir. Di destpêkê de, ji ber ku hemû gundiyan bertek nîşan dan, ev proje hatin rawestandin, lê belê niha hewl didin ku dîsa dom bikin. Em dibihîzin ku di destpêka biharê de ewê dîsa destpê bikin. Hemû niştecihên vê herêmê û gundiyên me, debara xwe bi xwedîkirina dewar û mozan û çandiniya gûzan dikin. Jixwe di navbera salên 1994 û 1995'an de hemû gundên me şewitandin, bexçeyên me xera kirin, em dane koçkirinê û em sirgûnî bajarên mezin kirin. Piştî Yasaya Vegera Gundan em dîsa vegeriyan gund û warên xwe. Dewletê soz da ku ewê alîkariya me bike, lê belê xuya ye ku dewlet heman dewlet e û dixwaze ev jiyana



ku me ji nû ve ji xwe re saz kir dîsa ji holê rake û ji nû ve mê koçî bajaran bike. Dewlet dixwaze ku tu mirov û ajal li vê herêmê nemînin. Em bang li derdorên hawirparêz, parasvanên mafê ajalan û hemû raya giştî dikin ku vê hawara me bigihînin herkesî. Berpirsên şantiyeyê û leşker bi hev re li ser me zextan dikin û dixwazin qadên jiyana me têk bibin. Niha dixwazin şêniyên gundên Baqisyan, Gulbîç, Şên, Berîç, Kirîvyan û Orûc ji van gundan derxînin. Zext û valakirinên gundan ên salên 90'î, niha bi ser projeyên HESê re dom dikin. Nêzîkî 4 hezar ajalên van gundan hene û bi hezaran bexçe û darên me yên gûzan hene. Dixwazin em dest ji van tiştên xwe berdin û biçin. Lê belê em şêniyên van gundan, me biryara xwe daye ku emê li dij vê yekê derkebin. Emê careke dinê gundên xwe vala nekin û koç nekin"

Wek Tirkiye û Kurdistanê, li çar aliyê dinyayê, ji zêdetirî 45 hezar bendavên mezin, bi 2 trîlyon dolarî hatine çêkirin. Her çiqas bendav sûda hilberîna elektrîkê, terxandina pêdiviya avê, rawestandina lehiyên avê û ragihandina bi avê pêk bînin jî, ev bendavên mezin, bûjenên organîk ên axa ku di bin avê de dimînin û rûberka nebatî ya riziyayî di xwe de digirin û ev bûjenên ku di bin avên bendavan de kom dibin, vediguherin gaza metanê ya ku çavkaniya herî sereke ya gazên serayî. Yanî vetewşiya gazên serayî zêde dikin û ji ber vê yekê pileya germbûna dinyayê pir bilind dikin û ev yek jî li ser avên vexwarinê xeteriyeke mezin peyda dike. Bendavên mezin her wiha, pergala herikîna çeman û jiyana di avan de jî têk dibin û pircûrehiya nebatan kêm dikin. Demên berê av bi cihikan dihatin arastekirin. Lê belê îro, av; bi boriyên dêwasa ji çavkaniyên xwe arasteyî cihên pir dûr dibe û ev rewş sedema sereke ya çolistanbûyîna erdên avî yên herêmên ku pergalên avên wan têne frotin, talankirin û dizîn. Ji bo qeyrana avê, çarenûseke din a bi teknolojiyeke bala jî avê ji cihê wê yê sirûştî arastekirina endustrî û bajarên mezin ên dûrî çavkaniya wê ye.

Di derbarê ziyanên bendavan ên li ser sirûştê de Bîyolog Şînasî Aslanlı jî da zanîn ku çar xalên ziyanê ku wî destnîşan kirî ye hene û van ziyanan wiha anî ziman: "Ji ber ku li bendavan, ji bo hilberîna elektrîkê herîkîna avê tê rawestandin, nebat û lawirên ku av li ser wan diçikime ji bê aviyê lawaz dibin. Ji ber ku di bendavan de tê komkirin, av; têra xwe mîneralên ku bi herikînê têkelî wê dibin nagire û berhemên çandiniyê yên ku bi vê avê têne avdan têra xwe mîneral nagirin û ji bêçarî zibirên kîmyewî bêtir têne bikaranîn û ev yek jî ziyaneke mezin li axê dike. Ji alî din ve Wezareta Çandiniyê ji bo zêdekirina masiyan, cûreyên masiyên biyanî dixe van avan û ev cûre masî bizirên masiyên resen ên wan avan dixwin û populasyona masiyên herêmî kêm dikin. Her wiha guherîna mîkro-îqlîmê jî zêde dibe"

### Awirên şirîkeyên derneteweyî li ser avên paqij in

Ji bo parastina berjewendiyên şirîkeyên mezin ên dernetewеyî, ji alî Banka Dinyayê, Rêxistina Bazirganiya Dinyayê û ajansên ku bi fonên gellek sermayedarên payandar têne piştgirîkirin, Lijneya Avê ya Dinyayê ku hemû ev şirîkeyên mezin ên dernetewеyî li hev kom dike hate damezirandin. Armanca vê lijneyê ewe ku di derbarê mafê bikaranîna avê de, bi deyn an jî bê bergidan pere bide dewletên xizan û yên ku dest bi geşedandinê kirine da ku dikaribin zextê li wan bikin an jî bi rêya ajans û şirîkeyên şêwirê yên ku wan damezirandiye, şaredariyên bajarên wan dewletan bêne qanîkirin. Di vê babetê de pir caran gihîştin armanca xwe jî. Her wiha ji bo pêşî li bertekên gelên ku avên wan ji dest wan hatine stendin bêne girtin, astengiyên li pêşiya polîtîkayên bidestxistin û bikaranîna avê bêne rakirin û ji bo bi niştecihan re lihevkirineke ne yeksan bê pêkanîn jî, dezgehên sivîl dane damezirandin û bi ser van dezgehan ve, di hin peymanên navnetewеyî de tedbiran stendin.

## Salvegera koça Şerafeddin Elçi

# Kurd divê minetdarên jinên xwe bin

Şakir Epözdemir

Şerefeddin Elçi gava li Enqerê hiquq dixwend, têkilîyên wî bi welatparêz, xwendevan û rewşenbîrên kurdan re germ bû. Di sala 1958'an de ku Barzanî yê Mezin ji Sovyetê vegeriya û hat Bexda'yê; morala welatparzên kurd bilindtir bû û Hikûmeta Menderes tirsand û sil kir. Ev yek bu sebebê ku salek şunda di 1959'an de operasyoneke berfireh li dijî xwendevanên kurd hat kirin. Şerefeddin Elçi jî di nava vê doza ku bi navê "Doza 49'an" dihat naskirin de hat darezandin. Ji ber vê yekê ew di temenê xwe 21 salî d ket nava refên welatparêz û doza mafê gelê kurd jê re bû mijara sereke ya siyasî. Partiya Demoqrata Kurdistana Tirkîyê (PDK-T) roja 11'ê Tîrmeha 1965'n de dema hat avakirin Seîd Elçi bûbû Serok. Şerefeddin Elçi jî sekreterê partiyê bû. Sekreteriya wî ya PDK-T gava ji terefê damezranêran va hate pejirandin Şerefeddin Elçi 27 salî ye. Piştî hingê ku Kekê Faik Bucak bû Serokê partiyê, Şerefeddin cîhê xwe de Kek Seîd û wek neferek xebata partî domand.

Di sala 1971'an de di 24'ê Êlûnê da MİT'ê operasyonek lidarxist û ji Cezîrê, Silopiya heta Sêrt û Wan û Hekarî li ser navê PDK-T gelek insanên xwedî îtîbar û welatparêz girtin. Ev operasyon piştî 70 roj kuştina herdû Seîd'an pêk hatibû. Bi kuştina Seîd Elçi û hepiskirina Dr. Şivan herdu sekreter û herdû partî pûç bibûn û tiştek li meydanê nemabû. Hesabêkê dewletê di vê operasyonê da heye, ew jî eve ku dizanin eger Şerefeddin Elçi bibe Sekreterê PDK-T wê partî xwe bide hev û ji binê qontrola wan derkevê.

Şerefeddin Elçi di 39 saliya xwe de di lîstaya AP yê kar kir û bû parlamanê bajarê Mêrdîn ê. Di sala 1978'an de di 40 saliya xwe de wek Wezîrê Avadankirinê tevlî kabîne ya Bulend Ecevît bû. Gava ku Elçi bi Ecevît re tê gel hev, ji wî re dibêje, "Ez kurd im, li ser doza 49'an û PDK-T hatime darizandın, eger hûn min bi nasnama kurdî nepejirînin, ezê piştgiriya hikumeta te bikim lê nakevim kabîne yê." Ecevit dibêjê; "Xem nîne. Ezê te bigirime kabîne yê."



Piştî ku di sala 1983'an de ji Zindana Mamak'ê hate berdan rojek em li Enqarê hatin gel hev. Di wê esnayê da mirovek ji masa xwe rabû hat bi rêz û hurmet kêfxweşîyê li Elçi da û li ser piyan xatir xwest çu.

Ew kesên ku salên 1978/79'an bîr tînin dizanin ku Şerefeddin Elçi di hikûmeta Ecevit de wek stêrka Gelawêj diçirisîya û Wezareta Bayındırlık'ê bubû wek wezareteke kurdî.

Di sala 1979'an de medya ya deme ya tirkî, bi carek xezeba xwe dirêt ser "Doğu'nun Elçisi Şerefeddin Elçi", ji ber ku Süleyman Demirel û "Milli Cepha ya faşist" dixwest di şexsê Elçi da hikûmeta Ecevit bixin û dawî li desthilata Sosyal Demokratan bînin. Medya tirk anî wê sêrê ku Rojnama Hürriyetê li ber Elçi sekinî got: "Tû tirk î ango kurd î? Elçi got: "Ez kurd im û li Tirkiyayê kurd hen in." Hingê Şerefeddin 42 salî bû. Ve helwesta wî Tirkiye'yê hejandibû.

12 Êlûna 1980'an de di dema darbe ya artêşê de Elçi hat girtin û li Dîwana Bilind hat darezandin. Elçi ji ber 2 tiştan dihat mehkemekirin: "Ez kurd im û li Tirkîye'yê jî kurd hen in û ji ber ku li wezareta xwe kar dabû kurdan." Ew li gor hiqûqê militarist hat cezakirin. Elçi ji dadgehê re wiha digot: "Eva 58 sal in komar hatîye avakirin. Li istatistikan mêzebikin, eger kurd li gora nifûsa xwe ji tirkan bêhtir ketine kar û di burokrasiyê da cih girtine, wê gavê mafê we heye hûn kardayinê kurdan bînin berçav. Di van 58 salan da cara yekemîne ku di Wezareta min da feydeyek gihîştîye kurdan, ev jî li zorê we tê, ev ne edalet e. "

Elçi dema di dadgeha bilind da hat darizandin 43 salî bû. Bê tirs û bê teredud li gor fikir û ramana xwe rastiyan anî ziman. Ji ber yekê hat hezkirin û dost û dijminan wî teqdîr kir.

Piştî ku di sala 1983'an de ji Zindana Mamak'ê hate berdan rojek em li Enqarê hatin gel hev. Di wê esnayê da mirovek ji masa xwe rabû hat bi rêz û hurmet kêfxweşîyê li Elçi da û li ser piyan xatir xwest çu.

Şerefeddin Elçi got; "Şakir, ev kes parêzerê Alpaslan Türkeş e û endamê partiya MHP'yê ye. Li zindanê rojek hat dîtina min, ji min re got ku ez ji dil û can te taqdîr dikim û em wek partî jî helwesta te bi hirmet dişopînin û em cenabê te wek şexsiyeteke ji doza xwe re rast û dirist dibîn in."

Şerefeddin Elçi û dost û hin welatparêzan di salên 1990'an Kurd-Kav'ê (Weqfa Çand û Lêkolînî ya Kurdî ) avakirin û bi biryara dadgehê navê kurdî tescilkirin. Hewildan û têkoşîna ku di wan salan da dikir ez şahid im, lewra em wê demê şirîk bûn, ji sala 1983'an ve em bi hevra bûn.

Şerefeddin Elçi Sala 1997'an de û di 60 saliya xwe da DKP'yê tevî 69 dost û hevalên xwe avakir. Gava ku Dadgeha Makezagonê doza dadana vê rêxistinê vekir û mafê berevanîyê da rêvabirîya partiyê, Elçi li vê dadgehê mafên kurdan parast. Lê partî hat dadan.

Min pêşiya wefata wî da roja 22.03.2011'an de hevpeyvînek bi cenabê wî re lidarxist. Çend ji van pirs û bersîvan ez dixwazim dûbare bikim:

**Ş. Epözdemir:** Şîreta te ji keç û xortan re çîye?

**Ş. Elçi:** Divê Keç û xortên kurd, berî her tiştê di mejîyê xwe da, di fikr û ramanên xwe de, xwe bighînin. Teknik û zanistîya modern bi dest bixin. Li ser exlaqêkê paqij û rêz û terbiyeyê bin. Kurdîtiya xwe biparêzin. Di warê ziman de him xwe û him zimanê miletê xwe pêşda bibin. kurd lazime di rabûn û rûniştin û di dan û standinên xwe da nefsbiçûk bin. Lê xwe ji tû kesî tûcar kêmtir nebînin. Xulamiyê û bindestîyê ti car qebûl nekin. Rûmeta xwe û miletê xwe di ser her tiştî re bigrin. Lewra insanên bê rûmet di rihê xwe da azad nabin. Ewên ne azad ne xweyê xwe û tû tiştê ne. Şîreta min li kurdan ewe tûcar li rojqedanê negerin. Tim armanca wan ew bî, naveke qenc û berhemên qenc li paş xwe bihêlin.

**Ş. Epözdemir:** Ji bona yekîtîya kurdan ku li dora berjewendîyên xwe yên millî û insanî kom bibin, şîreta te çîye?

**Ş. Elçi:** Berî hemi tiştî divê ku kurd bibin xwedî projeyeke siyasî. Li ser çend xalên netewî li hev bên. Divê daxazên wan, daxazên rewadar bin. Li gora hiqûqê navnetewî bin. Heyîna kurdan zimanê wan û welatê wan e. Li ser mafên çand û ziman tû tawîzan nedin heya zimanê wan bibî zimanê fermî û perwerdî. Divê kurd li welatê xwe xwedî derkevin heya ku desthilatdariya welatê xwe bi destê xwe bixin. Li ser van herdû xalan desthilatdariya welatê xwe û perwerdeya ziman kurd dikarin armanceke mişterek bi dest bixin.

Şakir Epözdemir: Ji bo mafên jinê, tû dixwazî çi bêjî?

**Ş. Elçi:** Gelê kurd lazim e gelek minetdarên jinên xwe bin. Ew barê giranê ser milê kurdan, piranîya wê jinên kurd hilgirtî ye. Eger ev fedekariya jinên kurd nebûya mesela kurdî nedihata vê merheleyê. Divê ezîyet û tedayî hîç li jinan nebî. Divê zewaca qîzan ne bê dilê wan bî. Divê di mafên mirovayetîyê da ferq û cudayetî tinebî. Lazim e jin hay ji jinanêyên xwe hebin, lê derîyên hemî fersend û imkanan ji wan ra jî vekirî bî."

## Miradê Kinê

# Mîrê ribaba Kurdistanê

Abdulhekim Günaydın

Filozofê navdar Thales bi gotina "Kesên ku stranan ji welatekî re çêdikin, ji mirovên ku qanûnan saz dikin hêjatir in"balê dikşîne ser rola hunermendan.Pirtirîn hunermendên Kurd bûne wekî pirekê û dîrok, çand û huner anîne heta roja me, parastine. Ziman bipêşxistine. Huner, ji hebûna mirovatiyê hetanî îro bûye şêweya hest û fikran. Bûye rêya derbirîna tirs, fikar, xweşî û hêviyên mirovan û jiyanê. Her dîrokek jî bûye şahidê bobelat û qewimînên bêjimar. Ev qewimîn gelek caran bi awayekî stemkarane di bin kavilê hilweşiyayî yê dîrokê de bêkes, bêxwedî, bêpar hatiye hiştin û tune bûye. Lê hin hunermend hene ku bi hunera xwe ew çend qewimînên ku hatine tunekirin, ji bin kavilê dîrokê derxistine û vejandine. Hunermendên bi vî awayî dîrokê ji nû ve dinivîsin, herwiha navê xwe jî li ser pelên dîrokê bi tîpên zêrîn qeyd dikin.Yek ji wan jî hunermendê nemir, stranbêjê Kurd Miradê Kinê ye. Mirado di kilam û lawikên xwe yên tije hest de bûyerên dîrokî yên hatine veşartin û tunekirin jî bilêv dike. Herwiha bûyerên herî biêş ên serdemên dîrokî dîsa bi dengê xwe yê xembar, jana xwe li têlên ribabê bar dike û vedijîne.
Miradê Kinê di sala 1943'an de li gundê Gêra Cehfer ku li ser Kercewsê (Gercüş) ye hatiye dinê. Mirado kurê Ferho, Ferho jî kurê Ahmedê Îsayê Kinê ye. Îsayê Kinê berî sedsalan ji Binxetê hatiyê herêma Torê bicih bûye û dengbêjiya Mîrê Botan kiriye. Ew bi eslê xwe ji derdora Şengalê ye.Miradê Kinê hetanî hivde saliya xwe bi malbata xwe re li gund jiyaye. Piştî hivde saliya xwe ji gund diçin Kerboran û li wir bicih dibin. Mirado di biçûkatiya xwe de bêtir bi ap û bavê xwe re dem derbaskiriye. Malbata wî bixwe di zargotina Kurdî de reng û dewlemendiyek hêja ye. Hêj di panzde saliya xwe de weke hunermendekî xweser û profesyonel li ser muzîk û ribabê rawestiyaye û baş fêr bûye.



**Mîrê Ribabê**

Rojeke Mirad li gel apê xwe Ûsiv (ap û xezûrê Mirad) diçin Binxetê li mala pismamekî xwe dibin mêvan. Civat digere û Ûsiv jî ji wan re stranan dibêje. Tê gotin Ûsiv hunermendekî mezin bû. Civat pirsa Mirado ji apê wî dike, Ûsiv dibêje biraziyê min e, ew jî hunermende û li ribabê dixe.Li ser daxwaza civatê Mirado radihêje ribabê û strana Bavê Seyrê "Efsaneya Seyrê û Eliyê Mamed" dibêje. Herçiqas Ûsiv strana Bavê Seyrê xweş gotiye jî, Mirad li apê xwe zêde dike. Piştî vê civatê nav û dengê Mirad hêdî hêdî belav dibe.
Di bîst saliya xwe de bi keça apê xwe Ûsivr e dizewice û di bîst û pênc saliya xwe de li bajarê Batmanê bi cih dibe. Dengbêj Mirado ne tenê li herêma Torê, her wisa li seranserê bakurê welatê me, ji Botan bigire heta Xerzan, Diyarbekir û Serhedê delalê ber dilê hezkiriyên kilam û stranên evînî û şeran bû. Civat li dora wî digeriya. Herwiha ji bo dawetan diçû bajar û metrepolên Tirkiyê û Kurdistanê.Wekî ku Kurd jî dibêjin dengê Miradê Kinê weke zengilê ji cam e.Her dera ku diçûyê gel xwe digihand Mirado ji bo ku li dengê wî guhdar bike û heke bikaribin kaseteke xwe li ber dengê wî bigirin.Êdî Miradê Kinê di lîteratûra folklor, hunera Kurdî û dengbêjiyê de wekî "Mîrê Ribabê" tê naskirin.



**Stran, çîrok, şano, dîrok tev bi hevre**

Mijarên kilam û lawikên Mirado şer, evîn, siruşt, veqetîn, lehengî hwd. ne. Li gel van mijarên cur bi cur, pirsgirêkên civakî û neteweyî jî di nav stranên xwe de dibêje. Dewlemendiya vegotina Mirado di navbera kilam û guhdaran û kilaman de pêwendiyek xurt daniye. Mirado bi hişmendiya xwe, agahdariya li ser dîroka Kurdan, vegotina xwe ya çîrokî teswîrên fizîkî û rûhî bandorek mezin li guhdaran hiştiye. Miradê Kinê, ne tenê kemançejenek bû ku di dawetan de li kemançê bixe, ew dengbêjekî mezin û xwedî repertuwareke fereh bû.Di repertuwara Mirado de stranên wekî Sêva Heciya, Lawikê Deqorî, Seyrê û Eliyê Mamed, Ziravê Kafirbavê, Ehmed Axa û Eyşe Xanim û hîn gelek stranên din hene. Tê gotin hejmara kasetên ku bi dengê xwe qeyd kiriye zêdeyî heştêyî ne. Deng li Kurdistanê hê jî wekî dengê Miradê Kinê peyda nebûye. Ew dengê bilind mîna çiyayê Ararat,wekî bilbil zîz û zelal, nexweşan ji nava nivînan radike ser piyan.
Di vê hunera Miradê Kinê de bes ne tenê muzîk, herwiha şano, reqs, wêje ziman û dîrok jî xwedî roleke pir girîng in. Tişta ku Miradê Kinê ji wan hunermendên din cuda dike, ew e ku Mirad di hunera xwe de rexnegirekî civakê ye. Ew çavdêriya civakê pir xurt dike û rexneyên xwe di nav stranan de dihûne. Di çanda Mitirbiyê de xaleke herî girîng jî ew e ku erotizm weke hêmayek e pirr girîng û xweşik cih digire. Mirado, derheqê bûyerên dîrokî de mirovekî agahdar û zanaye. Guhdar bi dengê ribaba wî ya bikeser di nav rastiya dîrokê de bi awayekî zindî dijîn.

**Karê memûriyetê û koça dawî**

Miradê Kinê di sala 1978'an de li Enqerê dibe mêvanê Wezîrê Avedaniyê Şerafettîn Elçî. Elçî, wekî stranbêj Eyşe Şan, xelatekê dide Mirado û wî jî digre memûriyeta dewletê. Mirado piştî ku du salan li Midyadê karê memûriyetê dike ji hêla cunta leşkerî ve ji bo bajarê Sêrtê tê pîşandin. Ew çar salan li Sêrtê hem karê xwe yî memuriyetê û hem jî karê mûzîkê dike.
Mirado wekî gelek kesên malbatê nexweşiya dil pê re derdikeve û ji ber wê çend caran diçe nexweşxaneyê. Bira, mam û hin xizmên wî jî ji nexweşiya dil jiyana xwe ji dest dabûn. Bijîşk jê re dibêje divê tu dev ji cixarê berde û mehekê nekşînî. Roja sî û yekê cixareberdanê di 17ê Kanûna 1984'an de seet li siyê şevê bi sînga xwe digire. Wî dibin nexweşxaneyê lê li wir hêj di xortaniya xwe de, di 41 saliya xwe de jiyana xwe ji dest dide û koça dawîn dike. Bi tevlîbûna gelek welatiyan cenazeyê Miradê Kinê li Sêrtê li goristana Şêxilhilo tê definkirin.

## Sedat Anar

# Xemxurê tasawûfa kurdî



**Siwar Bedîrxan**

Sedat Anar, xemxurê muzik û tasawûfa kurdî û şerqê ku heta niha çûye gelek turneyan û li gellek festivalên navdewletî de hunera xwe pêşkêşî bihizerên xwe kiriye. Anar gelekê caran jî derdikeve kolanên metropolan û li kolanan deng bi santura xwe dixe. Anarê ku ji aliyê kesên ku ji deng û muzîka kolanan xoşhal in ve baş tê naskirin, di jiyan û muzikî xwe de jî li hemberî gelek pîvan û qaîdeyên civakî disekine. Em bi Anar re li ser huner, jiyan û hêstên wî yên kolanî axivîn.

**Ku dikarî bi kurtasî bo xwînerên mi hinekî qala xwe bikî?**

Ez di sala 1988an de li Rihayê ji dayîk bûm. Hata hevdeh saliya xwe li Xalfetiyê bûm. Piştre min, Beşa Dîrokê ya Zankoya Hacettepeyê kar kir û hatim Enqerê. Niha jî li Enqerê dijîm. Ji zaroktiya xwe û vir de bi muzîkê re mijûl im. Debara xwe bi muzîkê dikim û hewl didim jiyana xwe bi wê bidomînim. Muzîk perçeyeke ji jiyana min e. Ez bi profesyoneli bi wê re mijûl im. Min jiyana xwe ji bi muzîkê terxan kiriye.



**Peywendiya te û santûrê çawa dest pê kir? Santûr ji bo te çi ye?**

Cara yekem min santûr di sala 2006an da dît. Di mala hevalekî de min dît. Navê wî Cihan bû. Piştre jî, min li mala hevalekî xwe yê îranî jî santûr dît. Ez pê re mijûl bûm. Min dît ku ez jê ne dûr im û ne xerîbê wê me. Di navbera me de peywendiyekekê dest pê kir. Ji xwe min li muzîkjenên îrani jî guhdar dikir.( Wek Muhammed Reza Şeceriyan,Parvaz Meskhatian) Mijûliya min piştî demekê bû evin. Min xwe li ser şopan ritmên wê dît.
Ez nikarim santûrê ji bo xwe tarif bikim. Du roj berê ez çûbûm Îranê û min santûreke nû da çêkirin. Bî lêdana santûrê rihê min azad dibe ez rihê xwe azad dikim. Gotineke Hilmi Yavuz" Kovan e ku herî li me tê".Ez jî ve gotina xweş ji bo santura xwe dibêjim. Ya rastî kovaniya min bi santûrê re ye. Ev heşt sal e santûr hevalê min e. Hevalê herî baş e. Hemû nepeniyên min ew dizane. Hemû razên xwe ez ji wê re dibêjim. Dema ji bo rêyên dirêj dibim rebiwar ew jî bi min re dibe hogir.

**Îranî edebiyata klasik û tasavûfê bi muzîkê vediguhezînin dema modern. Kurd di vê meseleyê de di kîjan astê de ne?**

Lî Îranê muzîkên ku bi santûrên tên pê gellek in. Ew jî bi giranî bingeha xwe ji edebiyata klasîk û tasawûfê digrin. Mirov nikare muzîka Îranê ya Klasîk bê santûr bifikire. Mirov nikare tasawûfa Îranê jî bê santûr bifikire. Kurdên rojhilat jî muzîka tesewûfe çedikin. Wek mînak tenbûr amûreke kurdan a meclisa zikrê ye. Tenbûr li cemxaneyên kurdên Ehlî Heq tê bikaranîn. Ew jî li rojhilat in. Erbane jî hevkariya santûrê dike.
Hunermendên bi nav û deng wekî Kamkarha, Shramê Nazerî, Ali Ekber Moradi; helbestên Baba Tahîr Uryan, Feruḍittin Attar,Mewlana,Hafiz Şirazi dikin beste. Ev mînakên herî ber bi çav in û ev li hemû dinyayê belav bûne.
Ez ê bêm ser edîbên kurdan û kurahiya wan. Dubeytên Baba Tahir Ûryan bi şiweazarê Kelhorî ne. Ez di wê baweriyê de me ku ew dubeyt ji ne kêmî helbestên Mewlana û Hafizê Şîrazî ne. Gellek edibên kurdan hene û li ser tasawifê kar kirine. Ez ê ji helbestan mînakekê bidim. Mesele helbesta Feqîyê Teyran a "Ey Ave" ji qaside ye Fuzulî ya "Av" ne kêmtir e. Ez wê hlbestê weke pira penûsê û dil bi nav dikim. Edîbên me gellek in. Yek ji wan jî Melayê Cizîrî ye. Hêja û qedirbilind e. Helbestên avên çemû robara ne. bi çoş in, diherik in û coşê jî pêktînin.
Hewceye li ser wan jî xebat bênê kirin. Gencîneyeke mezin a kurdan heye. Ev gencine hem edebiyê û hem jî tasawûfî ye.Divê hunermendên kurd li kelepora kurdi xwedî derkevin û wan bînin ser zimên weke li jorê jî min anî ziman bîreke mezin a kurdan heye. Nexasim jî hunermendên kurd ên li bakurê Kurdistanê dikarin gellek tiştên baş biafirînin.

**Te çawa dest bi vê gencîneyê kir? Û xebatên tê yên nû hene?**

Min helbesta klasîk a kurdî bi saya pirtûka Antolojiya Helbestan a Selîm Temo nas kir. Û min dest bi xwendina wan kir. Temo di Antolojiya xwe de cî dabû helbestvanên kurd ê li çar



perçeyên Kurdistanê. Di gulçîna Temo de helbesteke Şeyh Şemseddînê Exlatî hebû wê helbestê tesîreke mezin li min kir. Wê helbestê aramî dabû min. Tê gotin ya 'ez mest bûm' ez jî bi wê helbesta Exlatî mest bûm. Ez di bin tesira belaxata wî de ma bûm.
Tabî piştî xwendinê min dest bi bestekirina wan kir. Min digot divê ez ximetê bikim. Bi alikariya Selim Temo min gellek helbest kirin beste. Û min gellek jî wan xwendin. Şair Osman Mehmed jî alikariya min kir, ez bi wî jî re xebitim di warê xwendin û telafûzê de wî jî alîkarî da min. Belê xebatên min hene ez li ser helbestan dixebitim. Ez dixwazim wan ji refên kitênxaneyan derxim û weke besteyan bînim ser ziman.